

## Pêwîst e heta sala 2012'an maddeya 140 bê bicihkirin

Neçîrvan Barzanî di yekemîn hevpeyvîna xwe de - piştî ku bû cîgirê serokê PDK'ê - pirsên Rûdawê bersivandin. Neçîrvan Barzanî bi berfirehî behsa kongreya 13'emîn a PDK, biryara kişandina hemû dozên PDK'ê li ser rojname û kovarên Kurdistanê, pirsgirêka navçeyên cihê nakokiyê, referendûma Başûrê Sûdanê û çendîn babetên din dike.




Rûpel ▶10/11

Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwendevanên Rûdawê bêtir dizanin



وتەبێژی بزووتنەوەی گۆڕان
بۆ (رووداو):
**لووتبەرزیی ئێمە چییە و لەکوێدایە؟**

Rûpel ▶5

Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 79 | 18 Çile / Januar 2011

# Dîsa şerê PKK-Hîzbûllahê?

Serbestberdana 9 nûnerên Hîzbûllahê ku di salên 90'î de bi kuştin û revandina bi sedan kesayetiyên Kurd li Bakurê Kurdistanê bûbû sedema tirs û fikaran, dîsa metirsiya dubarebûna salên 90'î li Bakur daxist ber çavan. Daxuyaniya Serokê PKK'ê Abdullah Ocalan bi rêya parêzgerên xwe ku gotibû "Bila endamên Hîzbûllahê li Amedê neyên hewandin" û bersiva derdorên Hîzbûllahê metirsiya şerekî nû di navbera PKK û Hîzbûllahê xist rojevê. Rûpel ▶3 / 4




Wêne: DIHA

Kujer hatin berdan lê xizmên qurbaniyên Hîzbûllahê ku wek 'Dayikên Şemiyê' tên nasîn 300. car li Stenbolê hatin cem hev û banga dadê kirin

## Agahdarî

### Rûdaw wê êdî pêncşeman derkeve!

Xwendevanên hêja, ji bo ku Rûdaw bi kalîteyekî baştir û birêkûpêktir bighije ber destê we, ji destpêka **Sibatê 2011** û şûnde wê roja derketina Rûdawê ji **sêşemê** bibe **pêncşem**. Aboneyên Rûdawê jî wê roja înê rojnameya xwe wergirin.

## Jin û Civak

### Rapirsî: 92% jinan bi xizmên xwe re zewicî ne

Rapirsîneke ku Navenda Jinan KAMER'ê li Amedê kiriye, rewşa jinên Kurd a xirab, derdixe holê. Li gor rapirsînê nîvê jinên Amedê xwendin û nivîsandina wan tune û ji sedî 92 jin di temenê navbera 13-15 salan de bi xizmên xwe re zewicîne.

Encama zewacên xizmî jî dibe zarokên kêmendam. Herwiha gelek ji van jinan bê kar in û ji tûndiyê gazincan dikin.
Rûpel ▶12

## Çand û Huner

### Dêrîntirîn aktorê Kurd bê kes û bê war e

Aktorê Kurdistan û Îraqê yê herî baş Emer Çawşîn niha li Hewlêrê bê mal e û di bin naylonê de dijî. Fîlmên wî li Îspanya û Cannesê xelat girtin, lê xelat neketin destê wî. Emer Çawşîn niha mirovek bê war, jibîrkirî û bi tenê ye; ditirse ku di tenetiyê de bimire û li erdê bimîne.

Çawşîn jiber ew hatiye jibîrkirin gazincan ji hikûmetê dike û dibêje "bila cihekê bidin min tê de bijîm." Rûpel ▶9

## Spor

### Çavê wan nabîne, lê dest û ling dibînin!

Du jûdovanên Amedî ku çavên wan nabîne, Yeşîm Erman û Okan Tohumeken, tevlî Şampiyoniya Nebîneyên Çavan a Tirkiyê bûn û 2'yemînî û 3'yemînî bi dest xistin. Antrenor Ensarî Esen got armanca wan ew e ku di pêşerojê de li ser navê Amedê tevlî şampiyonayên Ewropa û cîhanê bibin: "Nebîneyên çavan dikarin di her warî de biserkevin û astengiya wan ne ronahiya çavê wan e, civak bi xwe ye." Rûpel ▶11

## Kurdistan - Ewrûpa

### Li welat kuştin, li Ewrûpa lihevhatin

Di sala 2008'an de li Başûrê Kurdistanê Misto Dawud Ereb, ji eşîra Hewêrî ya Kurdên Êzîdî, bi destê zilamekî malbata Simko Axayê Zêdik, ji eşîra Koçeran a Kurdên Misilman, hate kuştin. Piştî hewlên xizmekî malbata Hewêrî, roja 9'ê Çileya 2011'an herdu malbat li bajarê Kolnê, bi amadebûna bi dehan kesayetiyan û bi serperiştiya rasterast a PDK'ê, peymana lihevhatinê îmzekirin. Rûpel ▶6







Great Britain

## Piştî biryara kişandina dozan a li dijî rojnamevan

# Nivîskar û rojnamevan çaverêya gava dûyem ji PDK'ê dikin

**Newzad Mehmûd** Silêmanî

Piştî ku Cîgirê Serokê PDK'ê Nêçîrvan Barzanî bi rêya Rûdawê eşkere kir ku PDK hemû dozên ku li dijî nivîskar û rojnameyan vekirine, dikişîne; di medya de dengvedaneke zêde çêbû. Nivîskar û rojnamevan jî vê yekê wek gaveke girîng a PDK'ê dibînin û çaverêya avêtina pêngavên din ji PDK'ê dikin.

Doza dawî ya PDK'ê li dijî nivîskarên wek Merîwan Wirya Qanih û Aras Fetah bû. Merîwan bi biryara kişandina dozên PDK'ê kêfxweş e û vê wek "diyardeyeke exlaqî û erênî" dibîne û dibêje: "Dibe li himberê medya azad bibe nîşana guherîna helwêsta PDK'ê."

Biryar bû roja 11'ê Çileya 2011'an Merîwan bibe mêvanê radyoyeke Holendî û derbarê dozên PDK'ê û rewşa azadiya medyayê li Herêma Kurdistanê biaxife, lê dema nûçeya kişandina dozan bihîst, daxwaza lêborînê ji radyoyê kir: "Min ji wan re got helwêsta PDK'ê guheriye û jib o bernameyê sedemekî rasterast nemaye. Hêvîdar im ev bibe aramkirina rewşê û ne biryareke demkî be. Ger ev ji bo êrîşeke bihêztir ne xwe amadekirinek be, karekî baş ê, parastina medyaya azad e û herwiha karekî netewî û demokratîk e."

Di kongreya 13. a PDK'ê de, rapora komîteya ragihandinê ya kongrê hat redkirin û endamên kongrê rexneyên zêde li nivîsîngeha ragihandina PDK'ê û kanalên medya girtin, ku ne di astê pêwîst de bûn û nekarîn wek ku tê xwestin polîtîka û armancên PDK'ê ronî bikin. Rewşenbîr û rojnamevan bi coş û germî pêşwaziya helwêsta PDK'ê dikin ku Nêçîrvan Barzanî di hevpeyvîna Rûdawê de ragehand û bi baweriya wan ev pêngava vebûnê ya yekemîn e.

### „Divê PDK û YNK alîkariya medya azad bikin"

Sernivîskarê Rojnameya Awêne Şiwan Mihemed, ku rojnameya wî li dadgehan çend caran rûbirûyê gilînameyên PDK'ê bûye, diyar dike ger PDK bixwaze têkiliyên xwe ligel nivîskar û rojnamevanan asayî bike, pêwîst e nivîsîngehên rojnamevanî yên polîtburo, serokayetî û liqên xwe li pêşber kanalên medya veke: "Bê pêngavên din û bi tenê kişandina dozan projeya vebûna PDK'ê kêm dimîne. Li parlamenê, PDK û YNK piranî ne û divê bi rêya proje- yasayê yasaya karê rojnamegeriyê çalaktir bikin û alîkariya medyaya azad bikin. Nabe ev alîkarî bi rêya hizb û hikûmetê be, lê pêwîst e bi rêya kaneleke taybet alîkariya wan bê kirin."

Piştî hilbijartinên parlamentoya Iraqê di 7'ê Adara borî de, hinek kanalên tv rexneyên zêde li PDK'ê girtin û PDK'ê jî jimareke zêde ya dozan li dijî wan rojname û nivîskaran bir dadgehê.

Bi dîtina rojnamevan Yasîn Umer, ji bo destpêkirina pêvajoya vebûnê gava PDK'ê pêwîst e bihata avêtin: "PDK hest pê bike yan na, jimareke zêde ya xelkê ji xwe xeyidandiye. Nabe PDK bi wê jimara mezin a dengan bixape ku di hilbijartinên borî de bidestve anîn. Divê PDK dev ji wê stranê berde, ku xwe li her derê mafdar û birayê mezin bibîne û rê li ber gotûbêj û nîqaşan veke."

Dirûşmeke kongreya 13. a PDK'ê "nûbûn" bû û ligel ragehandina vê dirûşmê jî, kongre û armancên wê bûn cihê balkêşî û çaverêkirina çavdêrên siyasî û rojnamevanan. Cîgirê Serokê PDK'ê Nêçîrvan Barzanî dibêje: "PDK bi azadiya ra û nerînê ve girêdayî ye û wek pêşandana nêtpakiyê biryar da dozên xwe li ser hemû rojname û nivîskaran bikişîne."


Wêneyek ji bextewariyê: Zana Emîn, keça wan Lane û Gêma

# Keçek Kurd bi şewba berazan mir

**Birîtanya (Rûdaw) -** Dayik û bavê Lane wisa dizanîn ku keça wan tenê serma girtiye, lê bavê wê yê bijîjk û dayika wê, wê birin lênêrînê. Piştî ku rewşa wê ya tendirûstiyê xirabtir bû, birin nexweşxanê. Lê tenê piştî du rojan, Laneya 3 salî bi sedema şewba berazan jiyana xwe ji dest da.

Berî çend rojan ji bo bîranîna keça xwe, dayik û bavê Lane wêneyekê Lane belavkirin ku di dema amêra nefes dayîna bi ser dev û difina wê de girtîn. Armanca dayik û bavê Lane ji belavkirina vî wêneyî, şermezarkirina rayedarên tendirûstiya Birîtanya ye. Lane jiber ku temenê wê biçûk bû, derziya şewba berazan lê nexistibûn.

Li gor raporta rojnameya Daily News, Hikûmeta Birîtanya tenê derziya şewba berazan dide kesên ku jiyana wan di metirsiyê de ye. Ango kesên ku nexweşiya dil û nexweşiyên domdirêj hebin, jinên du canî yan jî kesên temenê wan li ser 65 salî be. Lê kesek asayî ku pêdiviya wî bi derziyê hebe, divê pereyê wê derziyê bide û nirxê wê jî giran e.

Dayika Lane Emîn ya bi navê Gêma, diyar kir ku gelek girîng e ew derzî li zarokan jî bê dayîn. Eger ne be wê zarokên din jî bi êşa Lane biçin.

Dayika Lane ragihand ku barê tendirûstiya keça wan ew qas lezûbez xirab bû, ew nekaribûn jê re ti çareseriyê bibînin: "Me qet fikra şewba berazan nekiribû, lê di demê 24 saetan de zaroka me bi wê sedemê jiyana xwe ji dest da."

Gêma ew yek jî diyar kir ku niha ducanî ye û piştî mirina keça xwe, biryar daye ku derziya şewba berazan li xwe bide.

Hevserê Gêma bijîjkek Kurd e û navê wî Zana Emîn (34) e. Zana Emîn behsa wê rojê dike ku keça wê Lane nexweş ket, tevî hevsera xwe, wê birin cihê lênêrînê. Li wê derê piştî lênêrînê, dermanê kûxikê danê. Lê wê şevê pileya germahiya laşê Lane bilind dibe û digihe nêzî 40 pileyên germahiyê û piştre Lane birin nexweşxanê. "Tayek zêde ya Lane hebû, bi wê sedemê jî me bawer nedikir ku nexweşiya şewba berazan girtibe."

Piştre bijîjk ji wan re dibêjin, "Lane jehrî bûye." Wê dibin mal û zarok radize. Piştî çend saetan dayika wê dixwaze Lane ji xew rake û hebê bidê, lê Lane ji halçûnê tê û wê digihênin nexweşxaneyê.

Zana Emîn ragihand ku piştî saetekê bijîjkên nexweşxaneyê ew agehdarkirin ku mejiyê Lane rawestiyaye.

Dayika Lane, Gêma dibêje: "Lane keçek jîr û hişyar bû. Zimanê Kurdî û Îngilîzî dizanî, ji semakirin û wênegirtinê hez dikir."

## Rûdaw xwe nû dike

**Em xwendevanên xwe agahdar dikin ku ji destpêka meha Sibatê 2011 û şûnde Rûdaw wê bi çendîn xizmetên nû, guhertinên naverokê û guhertina roja derketinê, pêşwazî li xwendevanên xwe bike.**

**Ji destpêka Sibatê 2011 û şûnde wê roja derketina Rûdawê ji sêşemê bibe pêncşem. Aboneyên Rûdawê yên li Almanyayê jî wê roja înê rojnameya xwe wergirin. Xizmetek din ku em li ser daxwaza xwendevanên xwe pêşkeş dikin, belavkirina pîrozbahî, sersaxî û agahiyên derbarê çalakiyên hunerî, konsert, çalakiyên ciwanan û hwd. e. Û ya herî baş: ev peyamên we wê belaş bên belavkirin. Me xwendevanên xwe yên biçûk jî jibîr nekirine, ji despêka Sibatê ve rûpelek zarokan jî wê dilê biçûkên me geş bike. Çendîn guhertin û nûbûnên din ji hene. Çaverê bin.**




**Rûdaw**
Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredin Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredin Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehki@yahoo.com

Mehmet Sebatlı
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sidar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dizayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefiq Edibî
garo2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

## Senaryoya Tûnisê rejîmên Ereb xistine tirseke mezin

*Berî ku dîktatorê Tûnisî bireve, hikûmetên Ereb ên dîktator, parêza xwe destpê kiribûn, niha gelek tirsiyane. Hikûmeta Urdunê buhayên xwarinên giring erzan kir û Serokwezîr ji artêşê xwestibû ku nehêlin buha bilind bibe. Serokê Lîbya jî biryara erzankirina buhayên xwarinan da. Li Misrê jî hikûmet û rêberên opozisyonê bi hişyarî çavdêriya rewşa Tûnisê dikin. Soreşa NAN a Tûnisê Ereb bi giştî xistine tirsê, nemaze ku niha li welatê Ereb ê herî mezin, Sûdanê referendûma serxwebûna başûr birêve diçe.* ▶ 14



**Piştî ku 9 nûnerên Hîzbûllahê ji Girtîgeha Amedê serbest hatin berdan di raya giştî de pirsa, 'Gelo wê dîsa hêzên tarî wek salên 90'î Hîzbûllahê li dijî Kurdan bi kar bînin?' belav bû. Siyasetmedaran ji Rûdawê re ev bûyer nirxandin.**



Kesên ku hatin berdan ji ber kuştina 183 kesan dihatin darizandin. Hîzbûllahê carina mirov direvandin, dikuştin û li cihên ne diyar vedişartin.

# Gelo şerê PKK û Hîzbûllahê tê plankirin?

**Firat Baran** Enqere

Li Tirkiyê piştî ku di sala 2004'an de di Yasaya Cezayan de hinek guhertin hatin kirin, girtiyên ji bûyerên 'terorê' piştî 10 salên razana li zindanê wê karibin bên berdan; ev guhertin du hefte berê berhema xwe da û rêvebirên rêxistina Hîzbûllahê ji girtîgehê hatin berdan. Serbestberdana endamên Hîzbûllaha ku di salên 90'î de bi tundiya xwe ketin rojeva raya giştî û li himberê wan nerazîbûneke mezin çêbû, bû sedemê rexneyên di navbera hikûmet û dadê de; hikûmet ji berdana van kesan dadê tewanbar dike, dad jî hikûmetê.

Lê tişta herî balkêş daxuyaniya Serokê PKK'ê Abdullah Ocalan bû ku ji Girava Îmraliyê bi rêya parêzgerên xwe gotibû, "Bila endamên Hîzbûllahê li Amedê neyên hewandin" û Hîzbûllahê jî di malpereke înternetê de bi heman tundiyê bersiv dabû. Guftûgoyên ku di çapemeniyê û raya giştî ya Kurdan de tên kirin metirsiya şerekî dijwar di navbera PKK-Hîzbûllahê de tîne rojevê. Lê di vê navberê de PKK, Hîzbûllahê wek ku ji aliyê hêzên kûr ve tê bikaranîn û dibe sedemê pevçûnan, tewanbar dike. Hîzbûlah jî bi heman awayî PKK'ê tewanbar dike.

Herdu aliyên ku Rudaw bi wan re axivî, herçiqas hevdu tewanbar bikin jî, di mijara nexwestina şerekî de wek hev difikirin û peyamên aştîxwaz didin.

### Parêzerê Hîzbûllahê Yilmaz: Hîzbûllah wê şer dest pê neke

Parêzerê Doza Hîzbûllahê Huseyin Yilmaz, pevçûnên di salên 90'an de nirxand û got piştî ku Serokê Partiya Karker (Işçi Partisi – IP) ê ku niha ji doza Ergenekonê girtî ye, Dogu Perinçek, Abdullah Ocalan qanî kir û ew nêzî xwe kir, şer destpêkir. Yilmaz îdia kir piştî ku navbera Ocalan û Perinçek xirab bûye, Ocalan ji Hîzbûllahê re agahî şandiye û xwestiye ku şer bi dawî bibe û şer wiha rawestiyaye. Yilmaz derbarê bikaranîna Hîzbûllahê ji aliyê dewletê ve jî got, "Hin kesên ku di nava Hîzbûllahê de bûn û ketibûn xizmeta hêzên tarî, hebûn. Ew kes di lêpirsînên Hîzbûllahê de - ku wek kaset hatine tomarkirin - vê yekê qebûl dikin."

Yilmaz axaftinên Ocalan ên dawî jî wek "ne rast" dinirxîne û dibêje "Kesên ku ez parêzeriya wan dikim, di wê baweriyê de ne ku Ocalan li Îmraliyê di bin kontrola hêzên tarî de ye. Dibêjin ku ew ê ti carî nebin aliyê şerxwaz û tiştek wiha qet naxwazin." Yilmaz xwest ku rewşenbîrên Kurd, welatparêz û parlamenterên BDP'ê jî daxuyaninên Ocalan rexne bikin.

### Bengî Yildiz: Tê xwestin ku Hîzbûllah bi PKK'ê re şer bike

> Hinek endamên Hîzbûllahê ketibûn xizmeta hêzên tarî



Parêzer Huseyin Yilmaz

> Bi armanca lawazkirina Kurdan ew hatin berdan



Parl. BDP'ê Bengî Yildiz

> Kî şer destpê bike wê di wijdanê gel de bimire



Parl. AKP'êAbdurrahman Kurt

Cîhgirê Serokê Grûba BDP'ê ya li Parlamentoya Tirkiyê, Bengî Yildiz ê ku di salên 90'î de li Êlîhê 4 heval û xalekî wî ji ber ku di Rojnameya Ozgur Gundemê de dixebitin, hatin kuştin, ragihand ku Hîzbûllah bi armanca astengkirina Tevgera Kurd dîsa ji aliyê dewletê ve derketiye holê. Yildiz ragihand ku alîgirên AKP'ê û yên dadê bi armanca lawazkirina siyaseta Kurd rayedarên Hîzbûllahê ji girtîgehê derxistine û dixwazin di nava Kurdan de şerê navxwe derxînin.

Yildiz da zanîn ku gelê Kurd ji bûyerên berê ders wergirtiye, bûye xwediyê ezmûnê û wê nekeve vê dafê û wiha axivî: "Hîzbûllah û Hîzbulkontra cûda ne. Eger ji niha û pê ve şerekî derkeve, wê ne şerê Hîzbûllah û PKK'ê be, wê şerê di navbera dijminê Kurdan JİTEM, Hizbulkontra û Kurdan de be. Wêkî din ez bawer nakim ku Misilmanên dilpak li dijî mafê Kurdan derkevin. Ji ber ku Kurd jî, Misilman jî, qurbanên vê sîstemê ne. Divê qurban di şûna şer de, hevkariyê bikin." Yildiz naxwaze ku daxuyaniyên Ocalan wek "banga şer" bên nirxandin û got: "Birêz Ocalan ne Misilmanên dilsoz, ne jî Hîzbûllahê tewanbar dike, lê Hilbulkontraya ku di salên 90'î de bi hezaran welatparêz, rojnamevan û siyasetmedar kuşt, tewanbar û deşîfre dike."

### Kurt: Kî şer destpê bike, wê gel wî şermezar bike

Parlamenterê AKP'ê yê Amedê Abdurrahman Kurt jî derbarê pevçûnên ku berê derketin jî axivî û got ji ber ku PKK'ê li ser komên derveyî xwe zext kiriye, wan pevçûnan despêkirin. Kurt da zanîn ku ew hêvî dike herdu alî jî xwe ji pevçûnan dûr bixin û wiha axivî: "Ez hêvî dikim ku ji paşerojê ders bên girtin. Gelê Kurd naxwaze careke din kurên xwe di şerekî wiha bê wate de, winda bike. Yê ku şer dest pê bike, wê di bin wî barê giran de bimîne. Kî şer dest pê bike, wê di wijdanê gel de bimire. Hêvî dikim ti kes nakeve nava kêmasiyeke wiha."

Berdan û windabûna nûnerên Hîzbûllahê siyaseta Tirkiyê û Kurdistanê germ kir

# HAS Partî: Berdana wan li ser jiyana Kurdan metirsî ye

# BDP: Ger dewlet dîsa wan bikar neyîne ti pirsgirêk dernakevin

Hikûmet di berdana nûnerên Hîzbûllahê de dadgehê sûcdar dike, dadgeh jî hikûmetê. Lê ew niha winda ne. Li gor MIT'ê ew reviyana Îranê. Nûnerên partiyên siyasî jî bi gûman in.

**Amed (Rûdaw) -** Derbarê berdan û windabûna nûnerên Hîzbûllahê de Endamê Lijneya Giştî ya HAS Partiyê Hasan Kaya ragehand ku berdana wan kesên mêrkuj li ser jiyana rewşenbîr, siyasetmedar û mirovên xwedan bîrûbawerî û paqij ên Kurd metirsiyeke mezin e. Serokê Koma BDP'ê li Meclîsa Tirkiyê Bengî Yildiz jî dibêje ger wek salên berê endamên Hîzbûllahê ji aliyê dewletê ve li hemberî tevgera Kurd neyên bikaranîn ti metirsiyeke mezin tune.

Piştî di madeya 102'an a Yasaya Sezakirina Dadwerî de guhertin hat kirin û ket warê cîbicîhkirinê, 9 nûnerên Hîzbullahê ku li Girtîgeha Tîpa D a Amedê girtîbûn, bi mercê sibeh û êvaran li Rêveberiya Polîsan îmzê bidin roja 3'ê Çileya 2011'an hatin azadkirin. Lê piştî hefteyek derbas bû û neçûn îmze nedan, 9. Rêveberiya Ceza ya Dadgeha Bilind derbarê Edîp Gumuş, Cemal Tutar, Fuat Balci, Abdulkerîm Kaya, Mustafa Îpek û Şehmus Kînay jî di nav de 9 tetikêşên Huzbullahê de biryara girtinê derxist. Li ser vê biryarê polîsan bi ser malên wan kesan ên li Amed û Êlîhê de girt, lê kes li mal nedîtin.

Li gor raporên îstîxbaratî yên di medya Tirkiyê de hatine belavkirin, endamên Hîzbullahê bi rêya bejayî çûne Wanê û ji wir jî bi rêyên ne yasayî derbasî Îranê bûne. Berdan û reva endamên Hîzbullah ku li Bakurê Kurdistanê destê wan di kuştin û windakirina sedan kes de heye, bû sedema nerazîbûnan. Muxalefet û partiyên Kurdan hikûmeta AKP'ê berpirs dibînin û hikûmet jî Dadgeha Biryardanê tawanbar dike.



9 nûnerên Hîzbûllahî di 3'ê Çilêya 2011'an de ji Gîrtîgeha Amedê Tîpa D serbest hatibûn berdan

## 'Kesên bi kuştina 160 kesan tên darizandin, çawa tên berdan?'

Endamê Lijneya Giştî ya HAS Partiyê Hasan Kaya ji bo Rûdawê mijar nirxand û diyar kir ku di berdana endamên Hîzbûllahê de hikûmet tawanbar e û got: "Em bibêjin dadgehê şaşiyek kir û ew berdan, baş e li Tirkiyê kesekî basît ne ku sed mêr kuştibe polîs wî dişopînin û li ber deriyê wî radiwestin, here çi sînorekî jî hêzên ewlekariyê hevdû agahdar dikin. Lê kesên bi kuştina 120 -183 mêran tên darizandin çawa tên azadkirin? Rast e hê dadgehkirina wan bi dawî nebûye, lê hinek tişt êdî îspat bûne û raya giştî jî dizane. Madem tiştekî wiha heye hêzên ewlekariyê çima ew neşopandin, dibêjin reviyane; ma gelo ne xuyabû ew kes wê bi cihekî ve birevin?"

Li ser mijara reva kadroyên Hîzbûllahê, Serokê Giştî yê Mustazaf-Derê Prz. Huseyîn Yilmaz ku parêzerê wan e, wiha gotibû: "Di 26'ê Çile de doza wan bi encam dibe. Di vê rûniştinê de dibe ku werin sezakirin an jî dosya bê hilweşandin. Bi baweriya min heta 26'ê mehê dernakevin holê. Ger ceza were hilweşandin belkî vegerin. Lê eger ceza bê pesend kirin, wê heta dawiya temenê xwe di girtîgehê de bimînin. Ger bi mantiq bin nayên."

## 'Dixwazin dîsa şerekî psîkolojîk bidin meşandin'

Di daxwiyaniyekê de ji bo Rûdawê Serokê Koma BDP'ê li Meclîsa Tirkiyê Bengî Yildiz jî amaje bi wê yekê da ku dema Tevgera Azadiya Kurd qala demokrasî û aştiyê dike, dewlet tengav dibe û hewl dide careke din li Kurdistanê şerekî psîkolojîk bimeşîne û bibe asteng. Yildiz wiha axifî: "Di salên 1990'an de Hîzbûllah û Kontr-Gerîlla şerekî qirêj pêk anîn û gelek siyasetmedar, rewşenbîr, kesayet, rojnamevan û hunermendên me qetil kirin. Di hilbijartinên 2009'an de Kurdan serkeftineke mezin bidest xist, niha jî ku hemû kes dizane wê nêzîka 40-45 parlamenteran derxînin, dixwazin dîsa tevlîheviyê derxin, hikûmeta AKP'ê û dewleta kûr yek tiştî difikirin, berdana endamên Hîzbûllah hemû bi hev ve girêdayîne, hem hikûmet û hem dadgehên Tirkiyê dizanîbûn wê wiha bibe, lê dîsa jî berdan."

## 'Dihat pêşbînîkirin ku di bin kontrola dewletê de birevin'

Derbarê wan agahiyên ku dibêjin endamên Hîzbûllahê reviyane Îranê, Hasan Kaya dide zanîn ku wî jî pêşbînî dikir ku di bin kontrola dewletê de derkevin derveyê welat û wiha pêde diçe: "Serokwezîrê Tirkiyê ajandeyeke wî ya eşkere û yeke veşartî heye, meseleya ajanda veşartî hatibû rojevê, lê cihê xwe negirtibû, lê bi vê bûyera dawî eşkere bû ku di bin hişê Erdogan de parastina kesên wiha heye, wan nêzîkê xwe dibîne û nermbûnekê pêşan dide. Ger ne wiha bûya wê bi awayekî dijwar bi ser vê mijarê de biçûya, wê bigota çawa çêdibe bi kuştina 100-150 kesan tên darizandin û hûn wan berdidin? Ger vê carê jî bigota wê hêzên ewlekariyê rê nedana van kesan derkevin derve''

## 'Gelo dewlet wê dîsa wan bikarbîne?'

Piştî berdana endamên Hîzbûllahê nîqaşeke wiha jî hat kirin ku dibe ji BDP'ê û PKK'ê re bibin hêzeke alternatîf, lê Bengî Yildiz tekez kir ku ger dewlet wan bikar neyîne nikarin tiştekî bikin û axaftina xwe wiha berdewam kir: "Di nav gel de hêzeke wan a zêde nîne, lê gumana me ew e gelo dewlet wê dîsa wan li hemberî Kurdan bikar bîne yan na. Ger neyên leyistikên dewletê ne proplem e. Lê armanceke wiha heye dîsa wan bikar bînin û di navbera Kurdan de şer derxînin. Ragehandina Tirkiyê jî Hîzbûllahê pir mezin û wek li hemberî Tevgera Azadiya Kurd û PKK'ê siyasetê bike, nîşan dide. Dema borî hêza hebû ya Kontra-Gerîlla û JÎTEM'ê bû, ger dewlet wan bikar neyîne ti pirsgirêk dernakevin."

## 'Ne diyar e wê kengî çi karî bikin'

Lê Kaya berdana wan wek metirsî dibîne û axaftina xwe wiha diqedîne: "Min daxwiyaniyeke Hîzbûllahê xwend ku dibêje ger neçar nebin çekan bikarnayînin, lê gelo wîjdanê wan çiqasî li gor pîvanên dadperweriya gerdûnî ye û ew neçarî kengî dest pê dike? Hêz, birêveçûn û tecrûbeyên wan wiha nîşan dide ku dikarin her gavê ne tenê yên derveyê xwe yên di nav xwe de jî bi awayekî hovane qetil bikin, di dîroka Tirkiyê de belkî rojekê mihasebeyek çêbibe û hêzên ewlekariyê û yên li ser navê Kurdan şer kirine werin dadgehkirin û bê famkirin ka kê çima kî kuştiye, lê bawer nakim ên Hîzbûllahê werin famkirin, di wîjdana raya giştî de nefreteke pir zêde li hemberî wan heye, lewra metirsiya careke din rabin rewşenbîr, mirovên pêşketî û û paqij qetil bikin, heye."

## Bi kuştina 183 kesan dihatin darizandin

Di nav kesên hatine berdan de Berpirsê leşkerî yê Hîzbûllah Cemal Tutar, Edîp Gumuş û Veysî Ozel ku ji kuştina 12 endamên PKK'ê berpirs in û ji 31 kuştinan dihatin darizandin wek Rifat Demîr, İsmaîl Kinay, Mehmet Varol, Galîp Ozer, Yusuf Begîç, Mehmet Beşîr Acar, Sînan Yakut, Andulkerîm Kaya, Mustafa Îpek, Fuat Balca, Kemal Gulsen, Mehmet Tahîr Ak, Mahmut Demîr û Yunus Avci cîh digrin. Herwiha hinek ji van tohmetbaran bi kuştina 160 kesan dihatin.

Sekreterê Partiya Serbestiya Kurdistanê Arif Bawecanî:

# Ji bo Îranê çareserî konfederalîzm e

Partiya Serbestiya Kurdistanê daxwaza otonomiyê red dike û daxwaza Kurdistaneke demokratîk û serbixwe dike.

**Hewlêr (Rûdaw)** – Sekreterê Partiya Serbestiya Kurdistanê, ku partiyeke biçûk a Rojhilatê Kurdistanê ye, Arif Bawecanî bi hinceta ku li ser ramana netewî naxebitin rexneyan li partiyên Kurd ên Rojhilat digre. Arif Bawecanî amaje dide bê bernameyî û belaweliya partiyên Rojhilatê Kurdistanê di demekê de ku rêjîma Îranê di qirîzekê de dijî û dibêje: "Pêwîst bû partiyên Rojhilat sûd ji guherînên ku piştî 11 Îlonê li cîhanê qewimîn, werbigrin. Lê ji dêlva vê nakokiyên navxweyî zêdetir bûn û hinek ji van partiyan parçe bûn."


Wêne: Rûdaw
Bawecanî û 4 hevalên xwe di sala 2006'an de ji PDK-Î qetiyabûn

Partiya Arif Bawecanî bi xwe jî berhema van dabeşbûn û parçebûnan e. Bawecanî wek bi xwe dibêje, çav û guhê siyasetê di nav Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê PDK-Î de vekirine û di temenê xortaniyê de bûye pêşmergeyê PDK-Î, lê bi derbasbûna demê re, lê mikûr tê ku cihê ramanên wî ne PDK-Î ye, loma di Sibata 2006'an de, ligel çend kesên din ku wan wek "hemfikir" binav dike, Partiya Serbestiya Kurdistanê ava dikin.

## "Baweriya xelkê beriya partiyan bi federalîzmê hebû"

Balkêş e ku sekreter jî di nav de piraniya berpirsên vê partiyê li derveyê welat dijîn. Arif Bawecanî ragehand: "Armanca partiya me Kurdistaneke serbixwe û demokratîk e. Dema ez pêşmergeyê PDK-Î bûm, ramana Pasok di hizra min de çêbû, ji wê demê ve min hizr kir ligel çend hevbîrên xwe di 2003'an de ger di kongreyên partiyên rojhilat de ev raman pêşde neçe divê berbi netewbûnê çend gav bên avêtin, pêwîst e ji bo Rojhilatê Kurdistanê bizaveke nû çêkin."

Bizava netewî li Rojhilatê Kurdistanê xwedî dîrokeke kevin e û ji Komeleya Jiyanewey Kurdistan ku wek JK tê naskirin destpê dike, dû re PDK-Î ji vê komeleyê peyde bû. Bawecanî dibêje: "Hinek dibêjin destê Partiya Tûde di serokatiya wê demê de hebû, hêdî hêdî ramanên çepgîrî û sosyalîstî tevî kadroyên bilind ên PDK-Î bûn."

Bi baweriya Bawecanî, ji aliyê hizra netewî cemawerên Rojhilatê Kurdistanê pêş partiyên xwe ketine. Ew mînaka PDK-Î tîne û dibêje: "PDK-Î heta vê dawiyê jî otonomiyê diparast, di sala 2003'an de dirûşma federaliyê bilind kir, lê baweriya xelkê beriya partiyê bi federaliyê hebû, xelkê di sala 1995 û 1996'an de ala Kurdistanê li mala xwe danîbûn, lê piraniya partiyên Kurdistanê heta sala 2003'an ala Kurdistanê ne danîn civînên xwe jî."

Partiya Bawecanî slogana Kurdistaneke serbixwe bilind kiriye, lê got ger xelkê Kurdistanê otonomiyê bixwazin ew dijayetiya daxwaza xelkê nakin: "Em ji bo Kurdistaneke demokratîk û serbixwe dixebitin û hewl didin ramanên netewî li Kurdistanê belav bikin."

Derbarê federaliyê ji bo Rojhilatê Kurdistanê ku niha PDK-Î daxwaz dike, Arif Bawecanî wiha axifî: "Em ligel federaliyê ne, lê bi şertê ku di wê federaliyê de piştî 6-7 salan bi mebesta cudabûna Kurdan ji Îranê, referendûm bê kirin."

## Partiyên Îranî û yên Kurdan nikarin Komara Îslamî ya Îranê bi çekan birûxînin. Lê Îran niha di astê navxwe û derve de di bin guşaran de ye.

Partiya Serbestî ne amade ye ligel Partiya Azadî ya Kurdistanê bibe yek ku ew jî xwe wek partiyeke netewî dide nasîn. Bawecanî daxwiyand: "Ew xwe wek partiyeke serxwebûnxwaz didin naskirin, lê endamê kongreya neteweyên Îrana federe ne. Ew niha federaliyê qebûl dikin, lê em vê yekê qebûl nakin."

## Îran dibe dewleteke konfedere

Her çiqasî Partiya Serbestî xebata çekdarî nake, lê Bawecanî rûxandina rêjîma Îranê, ji bo rizgarbûna gelên Îranê wek yekem rê dibîne û dibêje: "Partiyên Îranî û Kurdî nikarin bi çekan Komara Îslamî ya Îranê birûxînin. Lê Îran niha di astê navxwe û derve de di bin guşaran de ye. Ji sedî 90'ê xelk ne ligel sîstema Îranê ne, di nav sîstemê de jî nakokî hene, loma rûxandina Îranê pir nêzîk bûye. Heta niha me biryar li ser xebata çekdarî nedaye. Bi kuştina du-sê Pasdaran Îran narûxe."

Bi baweriya Arif Bawecanî, ger rêjîma Îranê hilweşe, wê hikûmeteke konfedere li Îranê çêbe: "Hizra netewî serî hildaye, berê ji ber ku partiya netewî nebû, hemû ligel micahidan û komunistan bûn. Niha di van partiyan de 10 kes ji neteweyên din nemane. Hemuyan partiyên xwe ava kirin. Bawer dikim hikûmeteke konfedere ava dibe, ku hemû jê razî bin, an her neteweyek serxwebûna xwe radigihîne. Bawer nakim Îraneke federalî ava bibe."

Navbirî dibêje baweriya partiyên Îranî bi giştî bi federaliya neteweyên Îranê tune: "Hemû partiyên nasyonalîst in û naxwazin ku Îran bê dabeşkirin."

Ahmet Dere

# Xweseriya Demokratîk û kêmasî

Projeya Xweseriya Demokratîk, ya ku ji aliyê Kongreya Civaka Demokratîk (KCD) ve hatiye pêşwazîkirin, li Tirkiyê bûye mijara guftûgoyên dorfireh. Ji dawiya sala borî û vir ve, heman guftûgo bûye parçeyek girîng a rojeva derdorên cûrbecûr. Bi taybetî, heman mijar ji aliyê derdorên Tirk ve pir tê guftûgokirin.

Ez naxwazim li vê derê wateya Xweseriya Demokratîk bînim ziman, herwiha, derbarê naveroka wê de nêrînên xwe binivisînim. Xala ku ez pir girîng dibînim, ya derbarê rêbazên amadekirin û eşkerekirina heman projeyê ye. Di rojên pêş de, ez ê di derbarê naveroka wê de jî nêrînên xwe bînim ziman.

Weke tê zanîn, ev projeya Xweseriya Demokratîk bi armanca bidestxistina mafên Kurdan hatiye çêkirin. Li gor rayedarên KCD'ê ev proje ji bo pêşeroja Kurdên Bakur e. Herwiha, dîsa li gor daxuyaniyên KCD'ê û yên KCK'ê, Xweseriya Demokratîk weke daxwazeke encama têkoşîna gelê Kurd e. Lê belê, û mixabin, li gorî girîngiya ku ev du rêxistin didin vê projeyê, heman mijar neketiye rojeva Kurdan û ji aliyê wan ve zêde nayê guftûgokirin. Lewre, ez vê rewşê xetere dibînim.

Ez dixwazim vê rastiyê bînim ziman; eger projeyek bi navê Kurdan tê çêkirin û ji raya giştî re tê eşkerekirin, divê beriya her tiştî ew ji aliyê Kurdan ve were guftûgokirin, û ji aliyê piraniya Kurdan ve bê pejirandin. Projeya ku ji aliyê piraniya Kurdên Bakur ve neyê qebûl kirin, ew nikare serbikeve û di jiyanê de cih bigire. Dîsa, pêwîst e heman proje ji aliyê Kurdên Başûr, Rojhilat û Başûrê Rojava ve jî were erê kirin, da ku bandora wê, bi awayekî erênî, di ser van parçeyan jî çêbibe.

Di destpêka çêkirina projeya Xweseriya Demokratîk de pir kêmasiyên rayedarên KCD'ê çêbûn. Bêyî ku derbarê heman projeyê de nêrînên derdorên cûrbecûr yên Kurdan werin girtin, rayedarên KCD'ê, û herweha yên BDP'ê, bi lezgînî civîn pêk anîn û projeya mijara gotinê eşkere kirin. Ev nêzîkatiyekê pir sivik bû û bû sedem ku ji aliyê derdorên tirk û herweha kurd yên cûrbecûr ve were rexnekirin. Eger heman proje ji aliyê piraniya rêxistinên Bakur ve hatiba pejirandin, ez bawer im ku ew ê ji raya giştî a Tirk ve jî destek girtiba. Lê mixabin, çawa ku birêz Ocalan jî rexne kiriye, rayedarên KCD'ê û yê BDP'ê pir sivik û bi lezgîn nêzîk bûn û niha jî nizanin heman projeyê çawa bipêş bixin.

Dibe ku hin berpirsyarên KCD'ê û BDP'ê van nêrînên min nepejirînin, lê belê rastî rastî ye, mijar bi hemû aliyên xwe ve li meydanê ye. Hin sazî û rêxistinên Kurdistanî ji niha ve rexneyên xwe bi dengekê bilind tînin ziman. Hin ji van sazî û rêxistinan jî di nava bêdengiyê de ne, divê ev jî weke xeteriyekê were dîtin. Dijîtiya komeke biçûk a Kurdan, ji ya Dewleta Tirk mezintirîn xetere ye.

Pêşniyariya min ji bo rayedarên KCD'ê û yên BDP'ê ev e; divê ew tenê li ser kaxizan projeyan çênekin, beriya ku ew projeyan çêbikin, divê ew di nava gel de û bi dorfirehî bidin guftûgokirin û ji aliyê piraniya raya Kurd ve bidin pejirandin. Ne wisa be, mixabin, wê tenê gelê Kurd were xapandin.

Bi amadebûna bi dehan kesan Hewêrî û Zêdikî peymanek îmze kirin

# Li Baedrê kuştin û li Kolnê lihevhatin

Li Kurdistanê berî du salan Misto Hewêrî bi destê endamekî Malbata Simko Axayê Zêdikî hat kuştin. Berî çend rojan herdu malbatan li Almanya peymana lihevhatinê îmzekirin. Dayika qurbanî û hevjîna wî jî qebûl nekirin ku Hikûmeta Kurdistanê xaniyekî ji keça wî ya 5 salî re ava bikin.


Wêne: Kamîran Qasim


Wêne: Rûdaw

**Jor: Piştî li hevhatinê herdu malbatan û mêvanên wan jî li resturanteke bajarê Koln xwarin xwarin.**

**Jêr: Rûniştina lihevhatinê ya malbata Misto Dawud Ereb (Hewêrî) ligel malbata Simko Axa Zêdik, (Koçer) ku bi serperiştiya Navçeya Duesseldorf a PDK'ê pêkhat û tê de bi dehan kesayetî amade bûn.**

**Silêmanê Alîxan** Almanya

Roja 4'î Hezîrana 2008'an li bajarokê Baedrê li Başûrê Kurdistanê, zilamekî malbata Simko Axayê Zêdik ji eşîra Koçeran teqe li xwîndarên xwe yên ji malbata Wecdî Axayê Zêdik kirin ku pismamê hevin jî û du kes kuştin, yek ji wan ji malbata Wecdî bû û yê din zilamekî bêguneh bû ti peywendiya wî bi xwîndariya wan herdu malbatan nebû. Vê bûyerê xwîndareke din ji malbata Simko Axayê Zêdik re çêkir ku ew jî malbata kuştî yê duyem ê bi navê Misto Dawud Ereb ji eşîra Hewêrî ya Kurdên Êzîdî. Li roja 9'î Çileya 2011'an, ango piştî 2 sal û nîvan herdu malbat li bajarê Koln ê Almanya civiyan û bi amadebûna bi dehan kesayetiyan û serperiştiya rasterast a Lîjneya Navçeya Duesseldorf a Partiya Demokrat a Kurdistan, peymana li hevhatinê îmzekirin.

### Navbijîwan ligel deshilata Kurdistanê lihevhatibû ku perçe zeviya keça qurbanî ku temenê wê 5 salin, jê re ava bikin, lê dayika qurbanî û hevjîna wî jî ev tişt qebûl nekirin û gotin em tiştekî naxwazin, me xwîn jî navê

Navbijîwan û organîzerê vê lihevhatinê, Rizgar Emer Misto derbarê bûyera kuştinê ji bo Rûdawê got "Ew qezayek bû, lê ne bi qesdî bû." Rizgar ku dibe xezûrî qurbanî diyar kir ku zavayê wî Misto Dawud Hewêrî karmendê şaredariya Baedrê bû, "Ew di dema vegera mal de ket ber teqeya zilamekî Zêdik û guleyek bi serê wî ket û hat kuştin." Rizgar Emer ku niha li bajarê Augsburg ê başûrê Almanya dijî, herwiha diyar kir ku keça wî qebûl nedikir lihevhatin çêbibe û digot bila dadgeh mafê wan bistîne "Lê bi rastî sûda vê yekê tune, ji ber ku zilamê wê bi qesdî nehatiye kuştin. Ji xwe qatil niha ne li Kurdistanê ye û kes nizane ew li ku ye."

### Xwîndariya ligel malbata Hewlêrî çareserbû, lê xweîndariya ligel pimsm hêjî maye

Di rûniştina lihevhatinê de ku birayên qurbanî, Ereb Dawud Ereb û Yasîn Dawud Ereb jî amadebûn, lê Rizgar Emer Misto kiribûn nûnerê malbata xwe, Rizgar derbarê dereng lihevhatina van herdu malbatan, got "Ti xêrxwaz nebûn ku ev lihevhatin çêbibe." Lê wî amaje da wê yekê jî ku gelek kesayetiyan hewl dan vê pirsgirêkê çareserbikin, "Babê Şêx, Mîr Tehsîn Beg û Kurê Moşîr axayê Goran, herwiha Waliyê Duhokê, Temer Remezan û birayê wî Moşîr jî pê rabûn, lê tiştek pêknehat." Rigar Emer Misto li dawiyê got "Bavê qurbanî gote min tu çawa bikî bila weke te be û piştî ew çû rehmetê jî min hewldanên xwe zêdetir kirin û me karî em vê lihevhatinê li vir pêkbînin, ji ber ku kesûkarên qurbanî li Baedrê nemabûn, tenê dayika wî û keça min ku hevjîna qurbanî ye mane û wan jî ez kirim wekîlê xwe."

Li Başûrê Kurdistanê pir caran lihevhatinên xwîndaran di navbera eşîr û malbatan de çêdibin û partî û aliyên siyasî diravekî mezin didin aliyê zerermend, mam Rizgar derbarê vê mijarê got "Ti aliyan pere nedan aliyê din û hemû xerciyên civînan jî min ji bêrîka xwe dan, tenê ji bo ev xwîndarî nemîne." Wî eşkere kir ku wî ligel deshilatdaran lihevkiribû ku perçe zeviya keça zavayê wî yê qurbanî ku temenê wê 5 salin, jê re bê avakirin, "Lê dayika qurbanî û hevjîna wî jî gotin em tiştekî ji wan naxwazin, me xwîn jî navê û guneha me di stûyê te de ye ku tu tiştekî wiha bikî." Wî herwiha diyar kir ku di serî de malbata Dawud Ereb Hewêrî lihevhatin jî qebûl nedikirin, "Ez bi mehan li ser xebitîm û min li ser xatirê seydayê Temer Remezan ev kar kir û li dawiyê min karî ez malbatê razî kim."

Nûnerê malbata kojer, Nafîi Simko Axa Zêdik ê Koçer jî ji bo Rûdawê diyar kir ku ji ber mirovên me û yên qurbanî jî li Ewrûpane, loma lihevhatin li Ewrûpa pêkhat "Ev lihevhatin li jêr çavdêriya kek Nîhad Barzanî û bi xêra wî û nûnerên wî û mamoste Temer Remezan û birayê wî pêkhat." Zêdikî ku niha li welatê Holanda dimîne got kek Rizgar Misto zehmeteke mezin kişand û malbata qurbanî jî ti mercek nedanîn ber wan "Ji ber wan zanî ku ev qezayeke bê destî bû û gotin em tenê dixwazin lihev bên û bi hev re rûnin. Ji xwe eger wan daxwaza tiştekê bikira, jî me yê bidayê." Zêdikî behsa wê yekê jî kir ku haya wî jê nîne ku hikûmet û PDK'ê jî diravek dabe kesûkarên qurbanî û got "Hêvîdarim êdî ev tişt li Kurdistanê neqewimin."

### 12 kesan peymana lihevhatina Malbata Hewêrî û Zêdikî îmze kirin

Ev bûyer berî du salan pêkhat û tê de du kes hatibûn kuştin, Nafîi Simko Axa got "Ev lihevhatin dereng ma ji ber ku pirsgirêka kesê din nehatiye çareserkirin, lê baş bû ku niha ev hat çareserkirin û em bi hêvîne ku pirsgirêka din jî çareser bikin."

Di civîna lihevhatinê de ji bilî nûnerên herdu malbatan, bi dehan kesayetiyên civakî, olî û rewşenbîrî amadebûn û bi serperiştiya Lîjneya Navşeya Duesseldof a Partiya Demokrata Kurdistan (PDK), peymana lihevhatinê ji aliyê nûnerên herdu malbatan, 6 şahid û 4 endamên PDK'ê hat îmzekirin. Berpirsê Navçeya Duesseldorf, Sadulla Berwarî ji bo Rûdawê got "Me bi navê lîjneya xwe û nûnertiya Liq (Şax)a-6 a PDK'ê û bi harîkariya hevalê xwe Rizgar Emer Misto ev kar encam da." Sadulla Berwarî got mirovên kojer li Holanda û yên qurbanî li Almanya bûn, "Me wiha kir ku mirovên kojer li pey mirovên qurbanî bên Almanya û lihevhatin li Almanya be."

Berpirsê Navçeya Duisseldorf jî amaje da ku berî wan Parêzgarê Duhokê hewl dabû wan li hevbîne, lê nekarî. Hin alî di wê bawerê de ne ku sedema derengketina çareserkirina vê pirsgirêka dirav bû, lê Endamê Liqa-6 a PDK'ê, Sadulla Berwarî dakokî li ser wê yekê kir ku ti pereyek nehatiye dayîn "Ez bi xwe ligel dayika qurbanî axivîm û min jê pirsî ka çi daxwaziyên wan hene, lê wê got em tiştekî naxwazin û em gerdena wan aza dikin."

### Parêzgarê Duhokê, Temer Remezan ku ji eşîra Koçerane di lihevhatinê de rola wî hebû, lê bersiva telefona Rûdawê neda

Li gor axaftinên herdu aliyan rola Parêzgarê Duhokê, Temer Remezan jî di vê lihevhatinê de hebû, Remezan ji eşîra Koçerane (eşîra kesê kojer), Rûdaw ji bo wergirtina bêtir zanyariyan û zanîna rola seydayê Temer Remezan di çareserkirina vê meseleyê de ka gelo weke parêzger yan weke kesayetiyeke eşîra Koçeran ev rol lîstiye, çend caran telefona wî kir lê bersiv nebû.

Nûnerê malbata qurbanî, Rizgar Emer Misto, herwiha nûnerê malbata kojer, Nafîi Simko Axayê Zêdik jî rexne li K.tv girtin û diyarkirin ku ew tv di rûniştinê de amadebû, lê nûçeya me belav nekirin û hêncet girtin ku ew nema van tiştên wiha diweşînin, "Lê baweriya me bi wê hêncetê nayê." Rûdawê hewl da xwe bighîne rêvebirên K.tv, lê bê encam bû.

## Homoseksuelekî Kurd li Skotlanda mafê penaberiyê werdigre

*Skotland (Rûdaw) – Homoseksuelekî Kurdê Sûriyê bi navê J. Yaqûb piştî ku ji dadgeha Skotlandî re îspat kir ku ger dersînorî Sûriyê bê kirin, jiyana wî dikeve jêr metirsiyê, mafê penaberiyê wergirt.*

*Li gor raporeke rojnameya Scotsman a Skotlandî, ev 3 sal in doza J. Yaqûb (21) li dadgehê ye û berî çend rojan dadgeheke bajarê Aberdeen ê Skotlanda doza Yaqûb qebûl kir û mafê penaberiyê dayê.*

*Di berdewamiya raporê de derbas dibe ku Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê nameyek şandiye ji berpirsên Skotlandî re û tê de piştgiriya J. Yaqûb kirine ku tevî çalakiyeke wan bûye û ger bo Sûriyê bê dersînorkirin, jiyana wî dikeve bin xeterê.*

*Navbirî di sala 2005'an de ji Sûriyê reviya, piştî ku di girtîgehê de rastî lêdan û îşkenceyê tê û dema rayedarên zindanê nas kirine ku Yaqûb hemcins e hê bêtir lêdane û ew îşkence kirine.*

Bêtiriya wan ji ber guşarên Hikûmeta Sûriyê reviyane

# Kurdên Rojava çalakiyên xwe li derve gengeşe dikin

Berpirsên hin rêxistinên Kurdên Rojava li derve ji bo Rûdawê ragihandin ku çalakiyên wan dihêlin pirsgirêkên Kurdan li Sûriyê bên gotûbêjkirin û bibin cihê girîngiya raya giştî ya welatên derve, lê hin dipirsin "Çalakî çê bûn, lê encamên wan çi bûn?"


Fethullah Husênî


Brahîm Yûsiv

**Besam Mistefa** Hewlêr

Dewleta Sûriyê bi awayekî tund dijî Kurdên Rojava tevdigere û biryarên nû wek biryara 49an derdixe bi mebesta domandin û aloztirkirina rewşa wan a dijwar. Piraniya Kurdên Rojava yên li derve dijîn ji ber guşarên Hikûmeta Sûriyê reviyane, lê ew bê çalakî namînin û hewl didin haya raya giştî ya cîhanê ser doza xwe çê bikin.

Navenda Helebceya Şehîd a li dijî jenosîdên Kurdan û Enfalê (CHAK) ku dezgeheke taybet a mafên mirovane û dijî jenosîdê ye, roja 15'î Kanûna 2010'an daxuyaniyeke berfireh weşand û zulm û guşarên dewleta Sûriyê dijî Kurdan, li ber çavan raxist. Herwiha CHAK'ê ragihand ku di 12'ê Sibata 2011'an de li Stockholmê ya paytexta Swêdê konferanseke navnetewî ji aliyê Kurdocide Watch-CHAK'ê tê lidarxistin.

### "Ji dêlva konferans, kombûn û civînan, bila Kurd lobiyeke xwe ya bi hêz li derve dirust bikin"

Berpirsê Dezgeha MAF a Mafên Mirovan li Sûriyê, Brahîm Yûsiv ji bo Rûdawê ragihand ku konferansên bi vî rengî dihêlin ku pirsgirêkên Kurdan li Sûriyê bên gotûbêjkirin û bibin cihê girîngiya raya giştî û medya welatên derve û Ewrûpa û cîhanê: "Serdema niha jî ya gotûbêj û diyalogê ye, Ewrûpî zimanê tund fam nakin, lewra pir girîng û bi sûd e em welat û gelên derve û Ewrûpa bi pirsgirêkên xwe yên netewî û giştî bidin nasandin."

Lê Berpirsê Ragihandina Partiya Çep a Kurd li Sûriyê, Fethullah Husênî diyar kir ku: "Meseleya han bûye wek propoganda, her çend kes tên ba hev û propoganda ji xwe re dikin, ji ber piraniya van konferansan bê encam dimînin. Berî demekê li Parîs, Denmarka û Amerîka jî çalakî û konferansên li ser Kurdên Sûriyê çê bûn, lê gelo encamên wan çi bûn?"

Fethullah Husênî ku li Başûrê Kurdistanê dimîne, tekez dike ku: "Kesên bi van kar û çalakiyan radibin hêza wan li Sûriyê tune ye. Ger hêza wan li welêt jî nebe, wê çawa û çi bandorê li ser rewşa Kurdan bikin û bihêlin ku hikûmeta Sûriyê xwe biguherîne û tevgera xwe ligel Kurdan baş bike? Bi sedan girtî û zindaniyên siyasî yên Kurd li Sûriyê hene, birçîtî zêde bûye, koçberî û zehmetkişandin jî, lê ka bi sedan konferansên ku berê li seranserê cîhanê hatine sazkirin çi kirine û çi encam bidestve anîne. Konferansên han ne tiştekî pêş dixin û ne jî paş dixin, nemaze ku li derveyî welat tên sazkirin."

### "Hê gelek gel û xelkên Ewrûpa û derve nizanin Kurd li Sûriyê hene yan na"

Brahîm Yûsiv ku xwedî 5 pirtûkên edebî ye jî, vê axaftina Husênî red dike û dibêje: "Rewşa Sûriyê û gelê Kurd û heta yê Ereb jî li wir eyan û eşkere ye. Gelo ti kes dikare konferanskê weha li Sûriyê saz bike? Niha dewlet pir tund bûye dijî Kurdan û girtin û zindankirina ciwanên Kurd didomîne û nahêle festîvaleke helbestan li maleke biçûk û gundekî dûr bê lidarxistin, wê çawa bihêle konferansekî mezin û navnetewî li ser Kurdên Sûriyê li Şamê, Heleb an Qamişloyê, bê sazkirin?"

Yûsiv herwiha destnîşan dike ku divê Kurdên Sûriyê yên li derve, li Ewrûpa û Amerîka û her cihekî dinyayê, sûdê ji azadî û demokrasî û derfetên li ber wan werbigrin û herdem bi rêya xwepêşandan, mangirtin, konferans û çalakiyên sivîl û aştiyane, rûyê dewleta Sûriyê yê rastî pêşan bidin: "Di vî warî de kêmasî heye, hê gelek gel û xelkên Ewrûpa û derve nizanin Kurd li Sûriyê hene yan na! Herwiha, nizanin pirsgirêkên wan çi ne, rewşa jiyana wan, girtin û îşkencekirin û dadgehkirina wan bi awayên ne dadmend nas nakin. Ger ne di rêya medya û konferansan de be, wê çawa bikarin xwestek û pêşniyarên xwe bigihînin wan."

Navenda CHAK'ê di beşekî daxuyaniya xwe de dibêje: "Dezgeha mafê mirovan Kurdocide Watch-CHAK di sala 2011'an de hejmarek rêzeçalakî li ser vê pirsê li seranserî Ewrûpayê plan kirine. Herwiha em ê li ser pirsê xwestinên xwe rasterast bigihêjînin rijîma Sûriyê ji bo ku siyaseta xwe bide guhertin."

Derbarê ka gelo çalakî û konferansên bi vî rengî ku li Ewrûpa û derve ji aliyê sazî û dezgehên Kurdî ve tên sazkirin, dikarin bihêlin dewleta Sûriyê polîtîka xwe derheqê Kurdan de biguherîne, Fethullah Husênî, ku heta niha sê pirtûkên helbestan bi zimanê Kurdî derxistine, diyar dike ku jimareke zêde ya van konferansan berê jî hatine girêdan lê qet nekarîne bandorê li ser hikûmeta Sûriyê bikin û guşar bixin ser da tevgera xwe baş bike.

Husênî wiha dirêjî da axaftina xwe û got: "Rêza her çalakiyekê digrim, lê ji dêlva Kurd dem û keda xwe bi van 'tiştên vala' derbas bikin, bila xwe bihêz bikin û xwe rêk bixin. Di dewsa konferans, kombûn û civînan de, bila Kurd lobiyeke xwe ya bi hêz li derve çê bikin, çima dikarin sedan konferansan lidar bixin, lê nikarin yek lobiya bihêz û xurt dirust bikin?" Navbirî weha pêde çû: "Konferansên ku li derve tên sazkirin, ji aliyê kî dibe bila bibe, tên beravêtîkirin û ne serkeftî dibin. Bi taybetî, bê hevkariya civaka navnetewî konferansên weha tenê felcbûyî û bê encam dikarin bên wesifkirin."

Berpirsê Dezgeha MAF a Mafên Mirovan li Sûriyê, Brahîm Yûsiv, hevkariya Kurdan li hundir û derve şertê serkeftinê dibîne û wiha axaftina xwe bidawî tîne: "Ger hikûmeta Sûriyê biguhere yan neguhere lê divê Kurd çi li hundir û çi li derve çalakiyên xwe bidomînin û raya giştî ya Kurdî, cîhan û Sûriyê bi rastiyan agahdar bikin. Li ser xala lobiyê jî, dengê xwe tevî dengê Husênî dikim û dibêjim bila Kurdên me yên li Ewrûpa û Amerîka lobiyeke bihêz ava bikin. Ger lobiyeke Kurdan a bihêz hebe wê rewşa wan li Sûriyê baştir bibe û pirsgirêkên wan heta cihekî bên çareserkirin."

## Rastkirin derbarê Kurdistan TV de

Di hejmara 78 a hefteya borî ya Rûdawê de, raporek li ser Kurdistan TV hebû. Di raporê de hin hevkarên kevn û nû yên wê televizyona kurdî, herwiha hin kesayetiyên Kurd jî gilî kirin ku ew televizyon hemû programan naweşîne. Di raporê de şaşiyeke teknîkî çêbû û axaftina berpirsê K-TV tê de der neket, em li vir daxwaza lêborînê ji xwendevanên xwe dikin û di heman demê de bersiva Serperiştkarê Studyoya K-TV û çalakiyên wê li derveyî Kurdistanê, mamoste Xelîl Şengalî diweşînin ku gotibû: "Gelek sedemên belavnekirina programan hene, dibe teknîkî bin yan jî xerabiya kalîte û naverokê be. Ji bilî ku hin caran kasetên programên me di rêya şandina ji bo Kurdistanê de wenda dibin."

## Bêtasî, Xelata Baştirîn Derhêner stand

*Besra (Rûdaw) – Xelata Baştirîn Derhêner a di Festîvala Kurtefîlman a li Besra kete destê Kurdekî.*
*Derhênerê kurtfîlmê 'Silûyd' Kameran Bêtasî, di festîvala Besrayê de 'Xelata Baştirîn Derhêner' stand. Festîvala ku 25 kurtefîlman tê de beşdar kirin, 3 rojan dirêj kir.*
*Kurtfîlmê bi navê 'Silûyd' ku behsa pirsgirêkeke civakî dike, 9 deqîqe dirêj e û berhemê Rêveberiya Sînemaya Dihokê ye.*



Narîna Kurdî:

# Ez ne heliyame, mamostayê min heliya ye

Narîna Kurdî ku ji Wanê ye û êdî li Hewlêrê dijî Eyşe Şanê û Şehrîbana Kurdî ji bo xwe wek mînak dibîne. Ji zêde temaşekirina rêzefîlmên Tirkî gazincan dike. Derbarê strana xwe de dibêje 'Ez ne evîndar im ku bihelim'

**Rûdaw: Çima li gel navê te, paşnavê Kurdî heye?**
**Narîn:** Kurdî navek xweş e û ji bo min azadî ye. Ji ber vê yekê min Kurdî kir paşnavê xwe.

**Narîn tê çi wateyê?**
Tê wateya tiştek narîn û nazik.

**Tu çawa hatî Başûrê Kurdistanê?**
Ez li Bakûr û Tirkiyê jî hunermend bûm. Min biryar da ku serdana Kurdistana azad bikim. Dema ez hatim vê derê, min hinek konser sazkirin û dengê min li xweşiya xelkê çû. Ji ber vê yekê min biryar da ku li vê derê bimînim. Niha tenê ji bo serdana xizmên xwe vedigerim Bakûrê Kurdistanê. Ez bi xêzana xwe ve hatime vê derê û bûme keçek Kurdistanî. Êdî naçim Tirkiyê.

**Li Bakûr û Tirkiyê derfetên pêşkevtina stranbêjên Kurd nîne?**
Niha Tirkiye ne wekî berê ye, heta radeyekê azadî heye. Ez bi cilûbergên Kurdî beşdarî kanala Urfa Tv bûm, bi kurdî axivîm û stran gotim. Ji min re ti pirsgirêk çênebûn.

**Tu guhdarvanên stranên kurmancî li Başûrê Kurdistanê çawa dibînî?**
Li vê derê gelek kes guhdariya stranên Kurmancî dikin.

**Albuma te ya yekem bi navê 'Ez Heliyam' bû, tu ji kê re heliya?**
(Bi pêkenîn), Elhemdûllilah ez ji bo kesê neheliyame. Ez ne evîndar im ku bihelim. Helbesta wê stranê, mamê min daniye û mamosta ye. Ez nizanim mamosta çima ew helbest nivîsandiye. Herçendî min ew stran gotiye, lê armanca min a ji wê stranê ew bû ku dema du evîndar ji hev cûda dibin, keç ji kur re dibêje; ez ji bo te heliyam, wekî berfa serê çiyan.

**Te di Festîfala Ciwanê Salê de stran got, xelatkirina wan ciwanan çawa bû?**
Karek pir baş bû. Ez hêvîdarim ku ciwan bi berdewamî bên xelatkirin.

**Albuma te ya yekem (Ez Heliyam) hemû bi kurmancî bû, çend heb hatin firotin?**
Min ew album bi rêya şîrketeka Tirk belav kir û 7 hezar CD hatibûn çapkirin. Ew album tenê li Bakûr û Tirkiyê hatiye belavkirin, hejmarek zêde destxweşî li min kirin û digotin dengê te gelek xweş e.

**Daxwaza te çî ye û tu dixwazî di pêşerojê de bibî çi?**
Ez dixwazim bibim hunermendek mezin, wek Eyşe Şan û Şehrîbana Kurdî.

**Te li gel Ezîz Weysî stran got, we çawa hev nas kir û rêkevtin?**
Li Mêrgesor konsereka me hebû. Ez, Ezîz Weysî û Seîd Gabarî beşdar bûn. Me li wê derê hevdû nas kir. Ezîz Weysî ji min re got, ez dixwazim klîbekê çêkim û daxwaz ji min kir ku ez beşdar bibim. Min jî bi xweşhalî got, belê. Ez bi wê klîbê gelek kêfxweş bûm û sipasiya Ezîz Weysî dikim.

**Tu wê carek din li gel Ezîz Weysî dubare bikî?**
Niha ne diyar e û di bernameya min de nîne.

**Ji bo tu bibî stranbêj, kes û karên te qet ji te re bûn asteng?**
Berevajî dayik û bavê min gelek alîkariya min kirin. Ji ber vê yekê sipasiya wan dikim. Herwiha mamê min û di heman demê de mamostayê mine, di vê derbarê de gelek alîkarî da min û ji min re helbstan çêdike.

**Li vê derê gelek ciwan ji stran, rêzefîlm û stîla tirkî hez dikin, tu ji wan ciwanan re çi dibêjî?**
Ez hîvîdarim ku li cihê stran û rêzefîlmên tirkî, gûhdariya stran û rêzefîlmên kurdî bikin. Ji ber eger mirovek Kurd be, divê gûhdariya tiştên kurdî bike.

**Tu li vê derê al û azadiya Kurdistanê dibînî, çi hestên te hene?**
Dema ez cara yekem hatim Herêma Kurdistanê, di rê de pêşmergeyek rawestiya bû, hat pêş û bi kurdî got; 'Hûn Baş in.' Bi rastî bi wê yekê pir kêfxweş bûm, ji ber li Bakûr hemû leşker bi tirkî diaxivin.

**Te ji kîjan temenî dest bi strangotinê kir?**
Di temenê 12 salî de. Wê demê min li dibistanê stran digot û digotin dengê te gelek xweş e.

**Tu niha dixwînî?**
Min heta refa 8'em xwend, lê min berdewam nekir. Li vê derê jî heta fêrî zaraveyê soranî bibim, gelek zor e. Min gelek dixwest ez xwendina xwe berdewam bikim.

Wêne: Rûdaw

**Çi berhema te ya nû heye?**
Ez bi albumek nû ya ji 11 stranan pêktê ve mijûl im. Stranên wê jî evîndarî û netewî ne. Di destpêka sala nû de, ez ê stranek a wê albûmê ya bi navê 'Te bo dilê min welê kir' bikim klîb. Wê navê albuma min jî ew be.

**Te qet evîndarî kiriye?**
Nexêr, hêj temenê min biçûk e û zû ye. Lê ez evîndar im, evîndarê Kurdistan û hunera xwe me.

**Tu ji çi xwarinan hez dikî?**
Ez li vê derê gelek ji dolme, kifte û biryanî hez dikim. Li Tirkiyê jî ji pitateyên sorkirî û girawedanê hez dikim.

**Dibêjin tu ji xewê têr nabî, wisa ye?**
(Bi pêkenînî) Erê rast e, ez nizanim çima. Ez ji xewê re gelek zîrek im. Eger ez li dibistanê jî ewqas zîrek bûma, niha ez bûbûm tiştek. Eger 24 saetan birazim, têr nabim.

**Tu werzişê dikî?**
Ez ji bo werzişê gelek jîr im. Min li Tirkiyê di spora voleybolê de madalya wergirt. Lê li vê derê ji ber karên hunerî, derfêtê sporê nema ye.

**Di jiyanê de herî zêde ji kê hez dikî?**
Dayik û bavê xwe.

Wêne: Rûdaw

**Biografî**

Keça stranbêj a ji Bakûrê Kurdistanê Narîn Serdar a bi navê Narîna Kurdî hatiye naskirin, di sala 1995'an de li bajarê Wanê ji dayîk bûye. Niha li navçeya Behrikê ya girêdayî bajarê Hewlêrê li gel xêzana xwe jiyan dike. Narîn xwedî hestekî Kurdayetî yê bilind e û dibêje piştî hatina wê ya Başûrê Kurdistanê, ew bûye keçek Kurdistanî û navegere. Narîn di vê hevpeyvînê de gelek tişt eşkere kir.

# Nord Media fîlma wê fînanse dike


Wêne: Rûdaw

**Hannover (Rûdaw) -** Saziya Nord Media ku navenda wê li bajarê Hannoverê ye û alîkariya darayî dide berhemên hunerî, niha piştgirî dide kurtefîlma keça Kurd Bilge Sumer. Saziya navborî fîlmê derhênerê Tirk Fatih Akin "Soul Kitchen" jî fînanse kiribû.

Bilge Sumer ku du pirtûkên helbestê nivîsandiye u sala borî di Rudawê de hevpeyvîna wê hatibû weşandin, niha li bajarê Hannoverê li Akademiya Hunerên Xweşik (Akademie Der Bildende Kunst) dixwîne. Sumer di bernameya salê de wek şagirtên din diviyabû kurtefilmekî amade bike da ku salê derbas bike.

We dest bi amadekariya kurtefîlmeke bi navê "Pirtûka Sor" ku nivî ji dîmenên anîmatîk û nîvê din jî ji dîmenên rast pêktên, kir. Sumer ragihand ku Nord Media wê tevî fîlmê wê ji akademiya wan 5 kurtefîlmên din jî fînanse bike. Sumer ragihand ku di fîlm de axaftin tune, lê muzîk heye û tenê 3 deqe didome. Sumer wiha axifî: "Min fîlmê xwe di dawiya sala 2010'an de qedand. Wê Nord Media mesrefên min ên sê mehan û herwiha bihayê materyalên ku min di fîlm de bikaraniye, bide." Sumer bibîrxist ku Nord Media alîkariya darayî daye fîlmê Fatih Akin ê bi navê "Soul Kitchen" û herwiha fîlmê wî yê nû ku di sala 2011'an de dikeve sînemayan. Derbarê fîlmê xwe de jî Sumer wiha axifî: "Mijara film li ser çîroke pirtûkekê ye. Pirtûk behsa xwedike, kê wê nivîsaniye, li ku hatiye cçapkirin, ketiye destê ku û li kîjan pirtûkxaneyan geriyaye"

Aktorê Kurdistan û Îraqê yê herî baş di bin naylonê de dijî

# “Ez pakêtên cigarayan jî bifroşim kes ji min nakire”

Ew dêrîntirîn aktorê Kurdistanê yê herî baş û herî wêrek bû; wî cara yekem di hunera kurdî de rolê jinê lîst. Fîlmên wî li Îspanya û Cannesê xelat girtin, lê xelat neketin destê wî. Omer Çawşîn niha mirovek bê war, jibîrkirî û bi tenê ye.

**Sinûr Mecîd**

Dema di festîvalek a Îspanya de Omer Çawşîn wek aktorê herî baş hat xelatkirin, li Pîrzînê di kavilê xwe de, ji tûnebûnê di nava xemê de bû. Çawşîn nizane ji kîjan derdan bêçaretiya xwe dest pê bike. Ew hunermendê ku cara yekem şoreşek nû di nava hunera Kurdî de avakirî ye, niha li bîra Hikûmeta Kurdistanê nemaye.

Jiyana Çawşîn ne wekî jiyana ti qehremanên bê wêne yên wek romanên Hemengway û Dostoyevskî ye. Ev zilamê bê war û bê mal û bê pere, bi xwe wiha dibêje: “Ez di nava kalivê xwe de dijîm, her şevekê li cihekê radizim. Hikûmet xedrê li min dike, derhêner jî xirabtir.”

### “Wekî Bileye Se’eker se û pisîk wê min bixwin”

Omer Çawşîn di despêka axaftinên xwe yên di ofîsa Silêmanî ya Rûdawê de, bi neriheti çarenûsa jiyana xwe ya di vê civakê de diyar kir. Ew zêdetirî 45 salan bi berîka xwe ya vala kar dike; “Ez jî wê wekî Bileyê Se’eker di kavilê xwe de bimirim, se û pisîk wê laşê min bixwin. Yan jî wê av bê odeya min, ez ê bixeniqim û req bibim.” Hunermend Bileyê Se’eker îsal di qezaya Dareto di kavilê xwe de jiyana xwe ji dest da. Piştî heftiyekê xelk nû pê hesiya ku miriye.

Cara yekem Emer Çawşîn di sala 1967’an de çû ser dikê, piştre li televizyona Bexda di çend karên hunerî de derket: “Dema me kar dikir, tiştek nebû. Min li gel Ehmed Salar di rewşeke gelek zehmet de karê şano û tv kir.”

### Ew nebirin Fransa û Îspanya

Ew ji çend derhêneran gazincan dike. Ji ber ku wekî bi xwe dibêje mafê wî hatiye xwarin; “Me filma ‘Rawecnoke’ ya Mehdî Umît derhêneriya wê kirî, kişand. Li çend welatan xelatên yekemîn bi dest xist. Piştre me filma ‘Sirtê Ligel Ba’ kişand û beşdarî Festîvala Cannes bû. Li Fransa temaşevan bi rolê min ecêbmayî man û daxwaza dîtina min kirîbûn. Lê derhêner Şehramî Elîdî derew kiribû û gotibû; karê wî heye û pêve mijûl e. Ez nebirim.”

Di festîfala Îspanya da xelata aktorê herî baş, piştî temaşekirina filma ‘Sirtê Ligel Ba’ dan Omer Çawşîn. Lê Elîdî li cihê wî wergirt. Herwiha Emer Çawşîn dibêje: “Ji Fransa dawetnameyek ji min re rêkirin. Herçendî dawetname negiha destê min, dîsa ji Îspanya daxwaza min kiribûn. Gotibûn, nexweş e û nikare bê.” Ew derbarê rewşa xwe ya li Kurdistanê ya niha dibêje: “Lê eger ez biçim Îspanya, êdî neyêm.” Emer Çawşîn biryar daye ku Kurdistanê bi cih bihêle; “Li Silêmanî çend karên min ên hunerî li gel Hawrê Mistefa mane û dema wan karan biqedînim, ez ê di cih de biçim. Ji ber ku xelkê Hewlêrê feqîr in, bi wijdan in û alîkariya min kirine, ez li vir mame.”

### Yekem car ew rolê jinan leyîst

Niha ev hunermendê li komelgeya Pîrzîn a li Rojhilatê Hewlêrê di xaniyek kavil de dijî û serê xaniyê wî bi naylon girtiye, wek kesek bîrkirî dijî. Di demekê de wî şoreşek mezin afirand û tekane kesê li ser textê dika Kurdî bû. Ji bo dagirtina valehiyan rolê jinê leyîst. Çawşîn derbarê jinên ku niha karê aktoriyê dikin de dibêje: “Niha ji jinê re tê gotin, tu li gel xwe kê tênî, bîne. Bi te çawa baş e, wisa were. Tenê ji bo tu beşdar bikî. Herçendî hêj daxwaza pereyek zêde dike, lê ez bi 10 dînaran rolê jinê dileyîstim.”

### Nizane jin û zarokên wî li kû ne

Emer Çawşîn mûçeyek a rêzgirtinê ya ji 300 hezar dînaran li gel mûçeya xanenîşînê hebû. Bi xwe bi sedema du mûçeyên 300 kes ji kîsê wî neçe, dest ji xanenîşînê berda ye. Niha jî qezenca wî ya karê hunerî gelek kêm e, neçar e ku her vê yekê bike; “Min ew qas karê hunerî kiriye, eger ez pakêtan jî bifiroşim, kes ji min nakire û wê bêjin kamereya veşartî ye.”

Ligel wî heta niha 3 jin anîne, lê agahdariya wî ji ti jin û zarokên wî nemaye; “Jina min a yekem li gel jiyana hunerî nedigunca. Timî min digot, nabe ez te li gel xwe bibim û digot îllah divê ez bêm. Du zarokên min jê hebûn, li gel xwe bir û çû.” Derbarê jina dûwem de jî dibêje: “Dîn bû. Şevê teyîb pê dixist, guhdariya stranên Nûrî Germiyanî dikir û li ser rêyan digeriya. Sibehan jî polîsan ji min re dianîn.”

Çawşîn derbarê jina sêyem a ji eslê xwe Îranî de jî got: “Min ji wê jî keçek hebû. Birayê wê dîl bû. Dema hat, nehêla ez li gel wan bim û min telaq da. Ji ber vê çi agehdariya min ji hersê jin û zarokên min nîne.”

### “Daxwaza min ji hikûmetê ew e, tenê cihekê bidin min”

Despêka meha kanûnê ya par ji bo Festîfala Sînema ya Îraqê hat vexwendin. Xelata aktorê herî baş ê Îraq û Kurdistanê wergirt. Lê ew aktorê Kurdistanê yê herî baş, di welatê xwe de di jiyana herî xirab de dijî: “Gelek pere ji hinek kesan re direşînin û ne hêjayî çi tiştê ne. Tenê daxwaza min ji hikûmetê ew e ku cihekê bidin min û tê de jiyan bikim. Diyar e hikûmet tenê mêrkûjî dixwaze û bi min jî mêrkûjî çênabe. Ji ber vê yekê ya baş ew e ku ez biçim.”



Wêne: Rûdaw

**Daxwaza min ji hikûmetê tenê ew e ku cihekê bidin min ez tê de bijîm. Diyar e hikûmet tenê mêrkûjî dixwaze û bi min jî mêrkûjî çênabe, ji ber vê yekê ya baş ew e ku ez biçim.**



Wêne: Rûdaw

Omer Çawşîn jiber ku mala wî tune, her şevek li cîhekî radizê

## “Naverok û nasnameya strana kurdî nemaye”



**Swêd (Rûdaw) -** Muzîsyenekî Kurd li Swêdê xwediyê studioyeke tomarkirina stranaye û dibêje; “Di strana kurdî de pêşketin çênebûye û dema mirov guhdarî dike, mirov wisa dizane ku stranekeke tirkî yan erebî ye.”

Muzîsyen û endazyarê deng, Mîran Mîranî, 15 sale ji Kurdistanê derketiye û niha li Swêdê dijî, wî li sala 1998’an li Swêd bi navê Şanya studioyek avakir û heta niha albûmên gelek hunermendên Kurd tomar kirine. Mîranî gelekî nêzî hunermendane, ew zêde guhdariya stranan dike û asta strana kurdî ya niha şîrove dike û dibêje: “Bi nerîna min strana kurdî di rûyê teknîkî de pêşketineke baş dîtiye û gihaye astek baş, lê di aliyê naverokê de, mixabin berhemên niha yên piraniya hunermendên Kurd ber bi dilsariyê çûne û ew hêz tê de tune ku salekê jî bimîne.”

Mîranî balkişand ser stranên bi zimanên din û got: “Eger tu guhdariya stranek tirkî, farisî, hindî, erebî yan înglîzî bikî, mirov dizane ew stran bi çi zimanî hatiye gotin. Taybetmendiyên muzîka wan bi berhemên wan ve diyare, lê dema tu guhdariya stranek kurdî dikî, tu wisa dizanî ku tu guhdariya stranek tirkî û erebî dikî, ev jî ji bo strana kurdî ne pêşketine, belkî coreke têkiliya hinek hunerê cîranên me ye.”

## Nêçîrvan Barzanî:

# Cîbicînekirina maddeya 140 di dema xwe de, binpêkirina destûrê bû

Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK), Nêçîrvan Barzanî di yekemîn hevpeyvîna rojnamevanî de, bersiva çend pirsiyarên Rûdawê dide û biryara kişandina hemû dozên PDK'ê li ser rojname û kovarên Kurdistanê ragihand û got ger hevdengiyek hebe ku yasaya organîzekirina xwepêşandanan xerab e, dibe ku ev yasa bê gotûbêjkirin. Herwiha Barzanî behsa pirsgirêka navçeyên cihê nakokiyê û referendûma Başûrê Sûdanê jî dike.



Wêne: Rûdaw

Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK), Nêçîrvan Barzanî

**Rûdaw: Kongreya pir çaverêkirî ya PDK'ê bidawî hat, encamên wê çawa dinirxînî?**

**Nêçîrvan Barzanî**: Bi baweriya min, di aliyê organîzekirin, gotûbêj û encaman de, kongreke pir baş bû. Eşkerebûneke zêde di kongre de hebû, bi ser de jî rexneyên zêde li hinek ra û nerînên birêz serokê PDK'ê bi xwe jî dihatin girtin, rexne li serkirdayetiya berê dihat girtin, rapor hat redkirin û atmosfêreke demokratîk a gotûbêjan hebû. Vê kongrê da xuyakirin ku hem tecrûbeya şoreşgêrî di PDK'ê de berdewame bi hebûna têkoşerên wê yên kevin, û hem jî ji ber ku derfeta derketin û pêşketina ciwanan di PDK'ê de pir berfireh e, dikare bi awayekî berdewam xwe nû bike. Ez jî di nav de, piraniya hevalên PDK'ê yên ku di kongreyên berê û kongreya 13'an de beşdar bûn, şahidiya wê yekê didin ku kongreke pir baş bû. Bê guman, wek her karekî mirov dike, kêmasiyên vê kongreyê jî hebûn, lê xalên baş û serkeftî yên kongrê ligel kêmasiyên wê nayên danberhevkirin.

> **"Ji bo serkirdayetiyê lîsteya min di kongreyê de nebû, li gor min a girîng ew e ku em hemû alîgirên PDK'ê ne"**

**Tê gotin gelek kesên ku we dixwest tevî serkirdayetiya PDK'ê bibin, negihiştin serkirdayetiyê, yanî encam ne bi dilê we bûn?**

Kok û bingeha vê yekê nîne. Ji ber lîsteya min nebû û xala yekemîn, hevbeş û girîng li gor min ew e yên ku hatin hilbijartin hemû endamên PDK'ê ne. Ji xwe ger kesek nehatibe hilbijartin û min jî wek her endamekî din ê kongrê xwestibe filankes bê hilbijartin, ev nîşana hebûna demokrasiyê di kongreyê de ye. Proseya demokrasiyê wiha ye, tu heta deqîqeya dawî li benda encamên hilbijartinê bimîne, lê ne ku berî jimartina dengan û ragihandina encaman, netîceyan bizane. Kesên ku hatin hilbijartin divê planên wan ên baş û berdewam ji bo nûkirina kar hebin û em çaverêya kar û planên zêde ji kesên ku nehatin hilbijartin jî dikin. Îro li Îraq û Kurdistanê PDK partiyeke berfireh û serekî ye û pêwîstiya wê bi karê hemû kadroyên wê heye. Kes ji PDK'ê zêdetir nîne û çavê PDK'ê li zêdetir e. PDK li himber gel, heval û neteweya xwe wefadar e. Şehîdan karwanê dirêj ê xebata PDK'ê bi xwîna xwe gihandin vê qonaxê. Endam, pêşmerge, kadro û serkirdeyên têkoşer xweşî û ciwaniya xwe kirin qurbanî ji bona vê partiyê, bi nanê hişk li şikeft û gundên Kurdistanê, bi bawerî û morala 'Yan Kurdistan, yan neman' PDK'ê û neteweya xwe li himber yek ji rêjîmên herî hovane di dîrokê de bi serbilindî hiştin, partiya xwe ji şikestin û ketin bihêz û gur û germ li ser piyan hiştin. Niha kesên ku dilê wan jî êşabe di nav de, em wan vedixwînin ku hembêza PDK'ê ji wan re vekirî ye, bila em hemû bi hev re kêmasiyan çareser bikin. Divê berpirsên PDK'ê, endamên rêxistinên nehênî, pêşmergeyên çiyê, hêzên bergiriya millî û gundnişînên ku wargeh û xwedîkerên pêşmergeyan bûn jibîr nekin û deriyên xwe ji wan re vekin. Dema serok Barzanî berî kongre bê lidarxistin, bi razîbûna polîtburoya PDK'ê biryar da ku ez bibim cîgirê serokê PDK'ê, pir ne bi dilê min bû ku vî karî bikim, ji ber rêzgirtina mamosteyê me yê têkoşer Elî Ebdulla. Em di PDK'ê de weha hatine perwerdekirin ku li himber xebatkerên xwe wefadar bin û her xeletî û xemsariyek jî hatibe kirin ne bi mebest bûye. Divê ev kevneşopî di PDK'ê de dayîm bimîne.

> **"Bi telefonê ligel serkirdayetiya Tevgera Goran axivîm û ji ber dawetnekirina wan ji bo kongreyê daxwaza lêborînê ji wan kir"**

**Berî kongreya 13'an, berpirsên PDK'ê behsa wê yekê dikirin ku wê PDK di vê kongreyê de ligel medya û partiyan, vebe. Gelo evê bê kirin?**

Bê guman ev siyaseta me ye. Berê jî min pêdagirî li ser vê yekê dikir. Niha ev siyaset hat çespandin, hêvîdarim kesên berambêrên me jî heman siyasetê bimeşînin. Di kongreyê de jî serok Barzanî ragihand ku komîteyek tê pêkanîn ji bo şopandina meseleya ka ji ber çi hinek hizb û Tevgera Goran ji bo kongreyê nehatine vexwendin. Di encamê de jî hat xuyakirin ku kêmasiyeke teknîkî hebû. Min wê demê jî got ew ne dijayetîkirina ti hizbekê bû û min daxwaza lêborînê ji Tevgera Goran û aliyên ku nehatibûn vexwendin, kir. Herwiha bi telefonê ligel serkirdayetiya Tevgera Goran axivîm û min daxwaza lêborînê ji wan kir. Dema dibêjim hinek kêmasiyên kongreyê hebûn, yek ji wan ev bû. Min bi xwe heta derketina moleta Tevgera Goran, rewş dişopand ku ti pirsgirêk dernekevin. Em dixwazin hemû alî di çarçoveya prensîbên netewî û niştimanî de ji bo gelê xwe kar bikin û bila di çarçoveya yasayan de ji bo karkirina baştir jî pêşbirkê bikin, rêkûpêktir û zêdetir, lê bêyî dijayetîkirina hevdu. PDK'ê bi tu awayî ne dijî azadiya ra û nerînê ye, me herdem gotiye ku divê di navbera desthilat û rojnamevanan de ne kîndarî û neyartî, lê diyalog hebe. Divê deriyê veguhastina zaniyariyan bê vekirin û rojnamevan jî ji aliyê xwe ve bi berpirsiyaretî û bi awayekî profesyonel karê pîroz ê rojnamevaniyê bikin û tenê yasa têkiliyên navbera herdu aliyan de organîze bike. Yasaya karê rojnamevaniyê li Kurdistanê jî, ku di serdemê kabîneya 5'an de hat danîn, piştî hinek guherînan ji aliyê parlamento, ji aliyê Serokê Herêma Kurdistanê hat redkirin. Ev yasa ji bo misogerkirina yasayî ya azadiya karê rojnamevaniyê li Kurdistanê bû, ku bi şahidiya gelek rojnamevanên Kurd û biyanî yasayeke baş û pêşkeftî bû. Hemû çîn û tiwêjeyên gelê me hêjayî yasayên pêşkeftî ne. Em dixwazin beşek ji cîhana pêşkeftî û demokratîk bin û ev yek bi danîna yasayên nû û başkirina wan pêk tê.

> **"Wek pêşandana nêtpakiya PDK'ê, radigihînim ku me wek PDK'ê biryar daye ku hemû doz û gilînameyên xwe li ser rojname û nivîskaran paşve bikişînin"**

**PDK'ê hinek doz li ser rojname, kovar û nivîskaran vekirin ku piraniya wan jî li derveyî yasaya rojnamegeriyê ne. Di çarçoveya heza vebûnê ya ku hûn behs dikin de, çarenûsa van dozan çi dibe, hûnê wan paşve bikişînin, an berdewam bikin?**

Wek pêşandana nêtpakiya PDK'ê, radigihînim ku me wek PDK'ê biryar daye ku hemû doz û gilînameyên xwe li ser rojname û nivîskaran paşve bikişînin û hêvîdar im ev gav wek nêtpakî bê dîtin û reftareke zêdetir xwedî berpirsiyarî di karê rojnamevaniyê de li Kurdistanê bê dîtin û ti rojnamevan û rojnameyek bi kîndarî kar neke, ji ber ev ji azadiya derbirînê û karê rojnamegeriyê dûr e. Dema ez serokê hikûmetê bûm, û niha jî dibêjim, divê bi awayekî saxlem kar ligel rewşa rojnamevaniyê li Kurdistanê bê kirin, hevdîtin di navbera desthilat û rojnamevanan de hebe û bi vî rengî em dikarin ji hevfamnekirin û rojnamevaniyeke navxerabker ku ne armanca ti rojnamevanekî profesyonel e, rizgar bibin. Min berê jî gelek hevpeyvîn ligel gelek rojname, kovar û kanalên li derveyî PDK'ê kirine, di pêşerojê de jî li gor derfetê hewl didim dîsa weha bikim û heta derfet hebe ligel wan rûnim. Kêfa me ji hemû lawên gelê me re tê, rojnamevan jî ku beşekî çalak ê civaka me ne û haya me ji kêmasiyên me çêdikin, li cem me hezkirî ne, ji ber ne ew bin em şaşîtiyên xwe nabînin û guh nadin wan. Dîroka PDK'ê dewlemend e bi rojnamevaniya azad, ji bo mînak di destpêka salên 1960 û 70'an de, dema ku moleta karkirina siyasî ya azad a PDK'ê hebû û dema desthilatdar bûye jî. Rojnameya Xebat di salên 1960'an de û El-Teaxî di salên 1970'an de ne ku bi tenê cihê azadiya derbirînê ji bo Kurdan bûn, lê ji bona tevahiya azadîxwazên Îraqê jî bûn. PDK xwediyê şehîdên rojnamevan e, wek Dara Tofiq. Kadro û rojnamevanên PDK'ê di serdema herdu şoreşên Îlon û Gulanê de Ronyo (aleta çapkirina belavokan) û dezgeha radyoyê ji cihekî dibirin cihekî din da ku peyveke azadiyê bigihînin ber guh û çavê xelkê Kurdistanê. Niha jî PDK'ê biryar daye azadiyê biparêze. Me berê jî hawara xwe biriye ber yasayê, da ku yasa serwer be, ji ber rojnamevan jî dizanin ku hawarbirina ber yasayê ne şikandina yasayê, lê serwerkirina wê ye. Guhastina agahiyan, rexnegirtin û çêkirina gotûbêjan karê rojnamevan û nivîskarane û em ne dijî ne, lê em xwe wek dabînkerên van azadiyan dibînin, bi xebata me ya dirêj ji bona bidestveanîna azadiya ku ji aliyê dagîrkerên welatê me hatibû zeftkirin. Ev erkê me bû wek azadîxwaz, loma em mineta xwe li kesî nakin. Bi baweriya min, rexnegirtin li kar û cîbicîkirina serokê Herêma Kurdistanê û serokê hikûmetê karekî baş û normal e jî û mafê xelkê ye, ji ber serok Barzanî serokê vî xelkî ye û hikûmet jî hikûmeta wî ye. Lê teşhîr, biçûkkirin û hûnandina tometan ne karê rojnamevanan e, her di vê derbarê de û ji bo ku ev azadî neyê têkdan, yasaya karê rojnamevanî hat derxistin ku tê de maf û erkên rojnamevanan diyarin. Em weke partiyekê, yasa rê dide me ku xwe biparêzin, yasa herwiha jî rê dide ku em bersiva her neheqiyekê bidin. Bi dîtina min nabe rojnamevan wê yekê bike erkê xwe ku vî welatî li ber çavên xelkê reş bike. Bi rastî pir caran di rojname û kovaran de tiştên weha dibînim ku heyfa min tê ku rojnamevanî li Kurdistanê bi vî awayî be.

Berdewam ▶11

# Hûn roniya çavên Kurdan in!

Ligel ku nabînin wek sportvanekî normal tevdigerin û bi ser dikevin. Du jûdovanên Kurd, ên bê çav, bûn 2. û 3. ê Tirkiyê.

**Bawer Çem** Amed – Jûdovanên Nebîneyên Çavan ên Amedê, di Şampiyoniya Tirkiyê de 2'yemînî û 3'yemînî bi dest xistin. Armanca jûdovanên Amedê şampiyoniya cîhanê ye.

Li Amedê her diçe beşên sporê yên cur bi cur bi pêş dikevin û Kurd di sporê de jî serkeftinên hêja bi dest dixin. Piştî ku Kurdên Amedî di tekvando û kîckboksê de şampiyoniya cîhanê û Tirkiyê bi dest xistin, di jûdoyê de jî ketin dereceyê. Beşa jûdoyê ya nebîneyên çavan ku di van salên dawî de vebû, şaxên xwe li Amedê jî vedide. Jûdovanên Nebîneyên Çavan ên Kuluba Amedê, tevlî Şampiyoniya Nebîneyên Çavan a Tirkiyê bûn û nûnertiya Amedê kirin. Jûdovanên Kurd ku li Enqereyê tevlî pêşbirkên Şampiyoniya Federasyona Jûdoyê bûn, li ser navê Amedê dereceya 2'emînî û 3'emînî bi dest xistin.

## Jin jî mêr jî ketin dereceyê

Li ser navê Amedê ji Kulûba Nebîneyên Çavan a Jinan 2 jûdovan û 2 antrenor tevlî pêşbirkê bûn. Di vê beşê de di kîloya 52'an de Yeşîm Erman bû 2'emîna Tirkiyê. Di beşa mêran de jî di kîloya 90'î de Okan Tohumeken bû 3'emîn. Antrenorê jûdoyê Ensarî Esen ku ji Rûdawê re axivî, diyar kir ku wan hêj nû dest bi xebata jûdoyê kiriye û digel vê yekê jî derece bi dest xistine. Esen, da zanîn ku ew xebatên xwe li Parka Sûmerê ya li Amedê, bi derfetên ku Şaredariya Bajarê Mezin ji wan re çêkiriye didomînin û wiha axivî: "Em niha salona sporê ya şaredariyê bi kar tînin. Em vî karî bê pere dikin, bi dildarî dimeşînin. Em dixwazin kesên xêrxwaz alîkariya me bikin û pêşiya nebîneyên çavan vekin."



Şampiyoniya Nebîneyên Çavan a Jûdovanan hefta borî li Enqerê hat lidarxistin

Antrenor Ensarî Esen, da zanîn ku cilên jûdovanên wan ku ew didin xebitandin tune ne û şaredariyê soz daye ku ji wan re kincên jûdoyê peyda bikin. Esen, got ku armanca wan ew e ku Amedê bi hemû dinyayê bidin naskirin û li ser navê Amedê dereceyên baştir bi dest bixin. Antrenorê jûdoyê, wiha axivî: "Em dixwazin bi hemû kesî bidin fêmkirin ku nebîneyên çavan dikarin di her warî de biserkevin û astengiya wan ne ronahiya çavê wan e, civak bi xwe ye. Em dixwazin di pêşerojê de li ser navê Amedê tevlî şampiyonayên Ewrûpa û cîhanê bibin û yekemîniyê bi dest bixin."

---

### "Serokê Herêma Kurdistanê di wê dîtinê de ye ku hemû fraksiyonên Parlamena Kurdistanê tevî gotûbêjên li ser proje-yasaya xwepêşandanê bûne, lewra wî yasa îmze kir"

**Madem em hêjî di nava çarçoveya yasayê û karkirina bi yasayê de ne, me dît ku nerazîbûn ji aliyê mûxalefet û hinek rêxistinên din ve li himberî yasaya xwepêşandanan (meş) û îmzekirina ji aliyê Serokê Herêma Kurdistanê ve hat hole. Hûn vê yekê çawa dibînin?**

Serokê Herêma Kurdistanê di wê dîtinê de ye ku hemû fraksiyonên li Parlamentoya Kurdistanê tevlî guftûgoyên derbarê wê proje yasayê de bûne. Naveroka wê yasayê jî li ser bingehê erkê hikûmetê li beramberî hevwelatiyan hatiye dariştin, ne ku li ser bingehê zeftkirina mafê meşan. Ji ber wê yekê jî wî ew yasa îmza kir. Desthilatên Serokê Herêma Kurdistanê û bingehê rêvebirina li Kurdistanê ji sala 1992'an ve li ser bingehê demokrasî û dabînkirina azadiyan hatiye damezirandin. Yekem kesê di dema raperînê de bang ji bo vê yekê kirî serok Barzanî bû. Niha jî ji hemû demê zêdetir bi wê bingehê ve girêdaye. Lê ez di wê baweriyê de me ku Herêma Kurdistanê xemsar bû û nekarî wê yasayê ji bo hevwelatiyan zelal bike, bi awayek ku hevwelatiyan nekin pergala kar û milmilanêya siyasî û di wî cûreyê ku tê de serokê Herêma Kurdistanê bike nîşan. Mûxalefet li Herêma Kurdistanê di wê baweriyê de ye ku divê ji hemû karên Hikûmeta Kurdistanê re bêje nexêr û ji hemû yasayên nava parlamentoyê re bêje nexêr. Eger ev yek li welatekî xwedî dewletek aram hêsan be, li Kurdistanek ku hêj sinorên wê nehatine diyarkirin, hêj êriş li ser hene, bi nêrîna min ne rast e. Li welatan dema opozisyon karê hikûmetê tînin rojevê, ew rewş ne wekî Herêma Kurdistanê ye ku yasayên pir pêwîst danin û bigûherînin. Li Kurdistanê kêmasî zêde ne ku opozisyon bikare bi hêsanî hikûmetê jê agehdar bike, bi awayekî ku pêwîstî bi wê yekê nebe ku dijî hemû yasa û karekî hikûmetê be. Afganîstan wêran bû, lê her wekî dewlet maye. Li Kurdistanê pêwîst e em gelek rêçawî aramiya navxweyî, aştiya civakî û dirûstbûna baweriya li gel xelkê bikin. Erkê hikûmetê ewe ku hemwelatiyan, partiyan û dezgehan biparêze. Ev bi danîna yasayê tê kirin, yek ji wan jî yasaya rêkxistina meşan e û ji bo bi azadî çalakiyên xwe yên medenî mîsoger bikin. Me bûyerên gelek nexweş ên canjidestdana hevwelatiyan û endamên partiyan hebûn, ên ku bi sedema hinek meşên li Kurdistanê çêbûn, ji ber wê yekê ew yasa gelekî pêwîst e. Eger hemû alî di wê baweriyê de bin ku ew yasayekî xirab e û rexneyên cidî li ser hene, divê em li ser biaxivin. Peyrewa navxweyî ya Parlamentoya Kurdistanê rê daye ku piştî demekî diyarkirî, yasa bên sererastkirin.

### "Divê hevpeymanên me yên Îraqî sozên xwe derbarê maddeya 140 pêk bînin û Amerîka jî pêdagiriya xwe bike pratîk"

**Ji navîna salên şêstî ve Kerkûk û navçeyên veqetayî yên Başûrê Kurdistanê koka pirsgirêka Kurdan e. Niha jî li 'Îraqa Nû' ew pirsgirêk ji aliyê Bexda ve wekî berê maye û lîstika demkuştinê tê kirin û herçendî Kurd li Bexda di van çend salan de xwedî desthilat bûn. Piştî kongreyê hûnê ji bo çareserkirina wan pirsgirêkan çi bikin?**

Di kongreyê de gelek guftûgo li ser pirsgirêka Kerkûk û navçeyên veqetayî yên Kurdistanê yên din hatin kirin. Diviyabû hîn zêdetir guftûgo li ser bihata kirin û berê kar li ser kaxezê bihata kirin. Lê ligel vê yekê jî biryara me ewe ku divê kar ji bo bicihkirina maddeya 140 bê kirin. Ev bingeheke û em hemû li Îraqê li ser rêketîn. Herwiha rêveberiya Amerîka jî pêdagiriya xwe di dema qebûlkirina yasaya hilbijartinan de û bi daxuyaniyek fermî li ser pêwîstiya bicihkirinê nîşan daye. Ji bo bicihkirinê hinek pêngav hatine avêtin, lê ew pêngav kêm in û bi kêmasî ne. Li gor destûrê diviyabû heya sala 2007'an ew madde bihata bicihkirin û çarenûsa wan navçeyan bihata diyarkirin. Di 19 xalên Îtilafa Fraksiyonên Kurdistanî de, 2 sal jêre hatine diyarkirin. Ango pêwîste heya sala 2012'an bê bicihkirin. Birêz Nûrî Malikî jî ew xal pejirandine. Niha gelek giringe ku partiyên Kurdistanê, gelê Kurd, çapemeniya Kurd, Serokatiya Herêma Kurdistanê, hikûmet û Parlamentoya Kurdistanê, parlamenterên Kurd ên li Bexda, arîkarê Serokkomarê Îraqê, hemû wezîr û berpirsên Kurd ên li Bexda û serokkomar xwediyê hemahengiyek hevbeş bin. Pêwîste ji bo bicîhanîna wê madeya destûrê, karên me yên hevbeş li gel Hikûmeta Bexda hebin. Dema ew madde di dema xwe de nehat bicihkirin, ew binpêkirina destûrê bû. Em di dema xwe de razî bûn ku li gor destûrê çareserî ji bo wan pirsgirêkan bê kirin. Niha jî dema em dibînin ku rêz li destûrê nayê girtin, bi rastî divê mirov fikra hinek çareseriyên din ên siyasî û yasayî ji bo sepandina bicihkirina wan maddeyên destûrê bike. Hevpeymên me yên Îraqî jî divê bêsoziyê di wê meselê de nekin. Pêwîste Amerîka jî pêdagiriya xwe bike kiryar, ji ber ku aştî û pêşketina Îraqê beşek giring a bi wê meseleyê ve ye.


Wêne: Rûdaw

### "Îraq bi nehiştina pirsgirêkên xwe bipêş dikeve, bi şer û çewisandinê lawaz û parçe dibe, Sûdan jî mînaka nû ye"

Piştî jihevcûdabûna Çekoslovakya û referandûma cûdabûna başûrê Sûdan, cîhanê ew yek wekî bûyerek pir mezin bi nav kir. Heya hinek ji wê yekê mezintir jî dibînin, ji ber ku aliyekÎ wê proseyê dewletek Ereb û Îslamî ye?

Ez wekî hemû azadîxwazekî Kurdistan û cîhanê, keyfxweş im ku pirsgirêkek nîştîmanî, neteweyek ji welatek Ereb, Misilman û Rojhilatî bi awayek medenî çareser dibe. Herwiha ez gelekî keyfxweş im ku gelek dengan di nav ronakbîrên Ereb de dibihîzim ku dibêjin divê daxwaza lêborînê ji gelê başûrê Sûdanê bikin. Herwiha dema behsa wê yekê dikin ku gelek bêmafî li gelê başûrê Sûdan û Kurdistan hatiye kirin, ev hişyarbûnek pir giring a destebijêriya Erebî ye. Dema ez piştgiriya cîhanê ya ji bo wê proseyê dibînim, gelek keyfxweş dibim. Herêma Kurdistanê ji sala 1992'an ve biryar daye ku di wê qonaxê de mafê diyarkirina çarenûsê bi awayekî federalî bikarbîne. Di çend salên derbasbûyî de jî Kurdan selmand ku sedema aştî, pêkanîna alî û pêkhatiyên Îraqiyan e. Ji ber wê yekê jî pêwîste aliyên Îraqî, Kurdan di vê dewletê û bicihkirina destûrê de wekî şirîkê xwe yê rast bizanin. Ji ber ku gel bi aştî û mafê xwe dikare bi hev re jiyan bikin, nekû bi şer. Îraqê ji bo şer gelek xerc kir û gelek zerer dît. Dîroka Îraqê ji çewisandin û kûştina bi kom a Kurdan a li ser nasnameya xwe tejî ye. Ez ne di wê baweriyê de me ku ti Îraqiyek xwedî wijdan bi wê yekê dilxweş be. Îraq bi nehiştina pirsgirêkên xwe dikare bipêşkeve, bi şer û çewisandinê wê lewaz û parçe bibe. Sûdan jî mînakek nû ye.

Di rapirsîna jinan de trajediyeke mezin:

# Li Amedê ji sedî 90 bi xizmên xwe re zewicîne

Rewşa jinên Amedê ya civakî bi lêpirsînekê re derket holê. Li gor lêpirsîna KAMER'ê gelek jin bi xizmên xwe re û di temenê zarokiyê de zewicîne, lewma ji van zewacan gelek zarokên kêmendam tên dinyayê.


Wêne: DIHA

**Jiber ku gelek jinên Amedê nexwendî ne nikarin li derve kar bikin, tenê li malê bi zarokan re mijûl in**

**Bawer Çem** Amed

Rapirsîneke ku li Amedê pêk hat, derbarê jinan de daneyên balkêş derxist holê. Li gorî rapirsînê, ji 12 hezar jinên ku tevlî rapirsînê bûne, ji sedî 92 bi xizmên xwe re zewicî ne. Ji sedî 24'ê jinan di 13-15 saliya xwe de zewicî ne.

Rapirsîneke ku ji hêla Navenda Jinan (KAMER) a Amedê ve hate kirin, daneyên pir balkêş raxist pêş çavan. Weqfa KAMER'ê di sala 2009'an de li Amedê xebateke rapirsînê da destpêkirin û ev xebat heta dawiya mehên 2010'an dom kir. Di çarçoveya xebatê de li taxên Lalebey û Ziya Gokalp ên Amedê, bi 12 hezar û 642 jinan re hevdîtin hate kirin. Temenê jinên ku tevlîrapirsînê bûn, zêdetir 35 salî ne. Di rapirsînê de derbarê awayê zewacê, hejmara zarokan, jin dixebitin an na û di xaniyekî çend odeyî de dimînin de pirs hatin kirin. Encama rapirsînê betalî, xizanî, zext û zordariya li ser jinan bi awayeke eşkere derxist holê. Ji sedî 68 jinên ku tevlî rapirsînê bûn, diyar kirin ku mehra wan a resmî û dînî heye, ji sedî 5'ê wan diyar kirin ku tenê mehra melayan heye û ji sedî 9'ê wan jî diyar kirin ku tenê mehra wan a resmî heye.

### Di zaroktiya xwe de mêr kirine

Yek ji encama herî girîng a rapirsînê, temenê zewaca jinan bû. Li gorî vê encamê piraniya jinên Kurd di temenê biçûk, di zaroktiya xwe de zewicî ne. Li gorî rapirsînê ji sedî 24'ê jinan di navbera 13-15 salî de mêr kirine, ji sedî 22'ê jinan di 16-17 saliya xwe de mêr kirine. Awayê zewaca jinan jî pir balkêş e. Li gorî encamên rapirsînê, ji her 100 jinan 63 jin bi kesên ku qet nedîtine re zewicî ne. Hatine ew xwestine û malbatê jî bêyî ku ji wan bipirse ew dane zewicandin.

### Ji sedî 92 bi xizmên xwe re mêr kirine

Lêkolîna KAMER'ê, derbarê sedem û rêjeya zarokên Kurd ên kêmendam de jî mirov dide fikirandin. Lewre ji sedî 92'ê jinên ku tevli rapirsînê bûne bi xizmên xwe re mêr kirine. Ev jî dide nîşan ku gelek kes guh nedaye hişyariya pisporan a "zewaca bi malbatê re dibe sedema anîna zarokên kêmendam." Piştî pirsa derbarê awayê zewacê de, rasterast pirsa "di malê de zarokên kêmendam hene?" tê kirin. Bersivên ku tên dayîn, rastiyeke din a jiyana Kurdan derdixe holê. Lewre ji 12 hezar û 642 jinên ku tevli rapirsînê bûne, ji sedî 9, diyar kirin ku di mala wan de kêmendam heye. Ev rêje dide nîşan ku ji her 100 malekî de di 9 malan de kêmendamek heye. Li gorî rapirsînê ji sedî 38'ê kêmendaman mêr in û temenê wan jî zêdetir 24 e.

### Ji sedî 50 nexwendine

Di rapirsînê de, derbarê xwendin û nivîsandin û rewşa aboriya jinan de jî daneyên balkêş derketin holê. Ji sedî 50 jinên ku bersiva rapirsînê dane xwendin û nivîsandin nizanin. Ji sedî 93'ê jinan qet naxebitin û ji van jinan tenê ji sedî 4 xwedî karek in. Di rapirsînê de, rewşa dahatiya jinan jî hate pirsîn. Lê di vê mijarê de jî tabloyeke reş derkete holê. Lewre ji sedî 88'ê jinan diyar kirin ku di mala wan de tenê kesek dixebitin, ji sedî 9'ê jinan diyar kirin ku di mala wan de ti kesekî ku pere qezenç bike tune ye, ji sedî 35'ê jinan jî diyar kirin ku tenê mehê di navbera 100 û 500 TL de pere dikeve mala wan.

### Tûndî û bêkarî

Ji sedî 52'ê jinan, eşkere kirin ku pirsgirêka wan a herî mezin kar e, ji sedî 10'ê wan jî eşkere kirin ku pirsgirêka wan a herî mezin tundî ye. Ji sedî 63'ê jinan diyar kirin ku ew careke din dixwazin bi KAMER'ê re hevdîtin pêk bînin, ji sedî 36'ê wan jî destnîşan kirin ku naxwazin êdî hevdîtin bikin. Jinên ku naxwazin careke din bi KAMER'ê re hevdîtin bikin, piranî bersiva "malbata min destûr nade" dan.

Tendirustî

## Bandora şer li ser pîskolojiya zarokan

Rêxistina Mafê Mirovan a Cîhanê (Amnesty International) diyar dike ku hîn li 40 welatan şer didome. Şer li ser bi milyonan kesan bandoreke neyînî çêdike, lê di civakê de herî pir zarok dibin qurbanê şer: An jiyana xwe ji dest didin an birîndar dibin, an jî nexweşiyên psîkolojîk bi wan re çêdibin. Herwiha hejmareke bilind zarok û ciwanên ku temenê wan di bin 18 salî de ne wek leşker (250.000 hezar zarok) di şer de tên bikaranîn. Li gor daxuyaniya Unicefê li tevahiya cîhanê 20 milyon keç û kûr maxdûrê şer in.


**Dr. Hajar Maroof***

**Gelo bandora şer a li ser zarokan çawa ye, hûn dikarin binirxînin?**

**Dr. Hajar Maroof:** Divê mirov bi du aliyan lê binêre û binirxîne: Yek bandorek raste rast heye ku ew zarok neçar in di nava şer de bi awayekî aktîf cihê xwe bigrin. Ew zarokên ku raste rast bi şer re rû bi rû dimînin, bêguman xwedî psîkolojiyeke gelek xirab in. Di nava jiyaneke bê parastin de ne û tirsa birindarî an jî mirinê bi wan re heye. Li şûna lîstokan ew bi amurên şer dijîn û ev dibe sedema birîndarî û mirina wan. Dema ku zarok bi malbatî li nav herêma şer de bin, rewş hîn xirabtir e, ji ber ku hingê ew malbat jî di bin xema debara xwe û zarokên xwe de dijîn. Ev jî bandorek neyînî li ser zarok çêdike û bi taybetî jin jî nesîbê xwe ji vê rewşa xirab digre.



**Bandora ne raste rast (îndîrek) çawa dibe?**

Bandora şer a li ser malbatan a îndîrek û negatîv wiha çêdibe: dema ku bav li şer be û dayîk bi tenê be û debara malê bike, zarok mezin bike û pêşbixe, lê ji ber derfetên kêm bandorek ne baş li ser zarok çêdibin. Mînak ji aliyê aborî, xwedîkirina zarok pêşxistina wî erkê jinê hîn girantir dibin. Ji xwe zarok her tim di nava stres, tirs û travmayên mezin de dijî; dema ku bavê wî bimre, xwe mecbûr dibîne ku heyfa mirina bavê xwe bistîne. Bê îradeya xwe, neçar dibe wek zarokek sêwî bijî.

Li ser lêşkerê Amerîkî piştî şerê Vietnamê hat xuyakirin ku ew kes êdî wek mirovên normal nikarin jiyana xwe bidomînin, ev yek jî bandorak gelek xirab li ser malbat û zarokan çêdike. Ji ber ew mirovên di bin psîkolojiyeke giran de mane, nikarin bi kesên din ên malbatê re bibin yek. Bandora şer ji xwe ew bê hêz û neçar hîştine. Pir zû hêrs dibin, agresîf in, nikarin rakevin; di şexsiyeta wan de şikandin hene, nexweşiya panîk-atak bi wan re derdikeve, bi dengê bilind diqîrin û dibin alkolîk. Ev li ser hemû malbatê bandor dike, lê bi piranî zarok ji vê parek giran digre. Ji ber wê pêwîstiya zarokan bi aramî û harmoniyê heye. Dema ku ji zarokan re alîkarî neyê kirin, ev bandor li ser tevahiya jiyana wan didome.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

***Dr. Hajar Maroof** *Maroof ji Başurê Kurdistanê ye, li bajarê Slêmaniyê dijî û bijîşkê pîskolojiyê ye.*

## Nil Airlines difire Kurdistanê



*Balyozê Misrê yê li Hewlêrê Silêman Osman, di 25'ê Mijdara derbazbûyî de bi awayek fermî wek yekemîn balyozê Ereb dest bi kar kir. Osman di hevdîtina li gel Rûdawê de ragihand ku wê navbera Misir û Kurdistanê de geşt bên destpêkirin. Balyozê Misrê Osman got "Em ê di demek nêz de vîze bidin hevwelatiyên Herêma Kurdistanê. Biryar e Nîl Airlines di demeke nêzîk de dest bi geşta xwe ya yekem bike." Li gor agahiyên Osman wê geşt heftane bin û du alî bin."*



Produktioneke nû di rê de ye

# Baz Group plana gelek projeyên nû dike

Bi armanca rêvebirin û organîzasyona çalakiyên hunerî, Koma Baz tê avakirin. Xwediyên wê bibîr dixin ku di bingeha alavên înternetê de tîpên kurdî tune ne û ew mizgîniyê didin bikarhênerên iPhone û iPad'ê ku ew klavyeya kurdî amade dikin.



Agirî Soran hewl dide xwe ku hevkariya hunermendan bistîne

**Mehmet Sebatli**

Li Bakurê Kurdistanê ji aliyekî ve doza bikaranîna zimanê zikmakî di jiyana rojane û qadên fermî de tê kirin û ji aliyê din ve piyaseya berhemên bi vî zimanê herdiçe geş dibe û dibe wek qadeke reqabetê. Ango têkoşîn ne tenê di hêla siyasî de û li dijî Dewleta Tirk dimeşe, lê di nava Kurdan bixwe de jî têkoşîneke bi rengekî din, wek xwedîderketin û belavkirina berhemên bi vî zimanî re têkildar, tê xuyakirin.

Bi armanca organîzasyona şev û konseran, tomarkirin û firotina CD'yan û menajertiya hunermendan, bi navê Koma Baz saziyeke nû tê avakirin.

### Ji bo iPhone klavyeya kurdî tê

Agirî Soran û hevalên xwe cara yekem 5 sal berê bi Online Kurdish Shop, ango Firoşgeha Kurdî ketin rojevê. Li ser malpera kurdewari.com cil û bergên kurdî, CD û albûmên hunermendên Kurd, pirtûk û kovar difrotin. Paşî karê xwe gihandin asteke bilind û li ser înternetê bi navê Kurd FM radyoyek saz kirin. Di dawiya sala 2010'an de dest bi organizasyonan kir û wek yekem çalakî, bi beşdariya gelek hunermendan li Frankfurtê amadekariya Şahiya Şeva Sersalê kir, lê ji ber sê hunermendan li ser daxwaza Mîr Muzîkê xwe ji şahiyê paşve kişandin, şahî lawaz hat lidarxistin. Agirî Soran piştî şahiyê daxuyand ku vê bûyerê armanca wan zelaltir kiriye û ew ê dest bi amadekariya çendîn projeyên girîng bikin. Agirî Soran derbarê projeyên xwe yên nû de ji bo Rûdawê got "Em produktionek wisa saz dikin, da ku şivanekî bê derfet, lê xwediyê hestên hunerî bi rêya me karibe bibe hunermendekî navdar." Haya Soran ji hebûna saziyên din heye û dibêje, "Em ji bo reqabetê tên."

Agirî Soran projeyên xwe yên nû di du beşan de rêz kir û di rêza yekem de projeyên li ser înternetê vegot. Soran mizgînî da bikarhênerên iPhone û iPad'ê û got, "Em ji bo van herdu aletan klavyeya kurdî amade dikin." Soran bibîr xist ku di bingeha hemû alavên înternetê de tîpên kurdî tune ne û heta niha ti kesî klavyeya kurdî ku mirov karibe di înternetê de bi hêsanî bikarbîne, çênekiriye. Soran da zanîn ku wan di sala 2010'an de dest bi çêkirina bernameya kurdî ya ji bi iPhone kirine û wê di nêzîk de bi dawî bibe û wiha dom kir: "Kurd gelek bi înternetê re mijûl in û gelek telefonên mobîl ên cuda bikartînin. Lê nikarin bi zimanê xwe bi hêsanî peyamam binivsînin an jî sohbet bikin. Me ev kêmsî dît û bernameyek taybet çêkir. Wê di nava çend hefteyan de bernameya me amade be."

Agirî Soran ragihand ku ew û hevalên xwe wê hemû bernameyên nû di malpereke taybet a ji bo van karan de, bicivînin: "Me ji bo pêkanînên kurdî yên înternetê bi navê www.kurdapp.com malperek taybet ava kiriye. Her kes dikare jê sûd werbigre."

### Stêrk Group bû Baz Group

Agirî Soran piştî şahiya sersalê daxuyandibû ku ew û du hevalên xwe, Hawar Salih û Hêvî Ernas bi navê Stêrk Produktion (Koma Stêrk) wê şîrketek ava bikin û di vir de organîzasyonan çêkin, CD'yan bifroşin, ji hunermendan re menajertiyê bikin û alîkariya hunermendên bê derfet bikin, lê Agirî Soran da zanîn ku wan navê koma xwe guherandine û kirine Koma Baz. Soran sedemê vê yekê wiha vegot: "Bi navê Stêrk li Tirkiyê û Almanya gelek navên fermî hene. Beriya me gelek kesan ev nav wek marke standine, ji ber vê me navek din ji xwe re dît: Baz Group."




### Bi 40 hunermendan re di têkiliyê de ne

Ligel ku niha di bazara muzîka kurdî de wek Mîr Muzîk, Kom Muzîk, Huner, Fes û Aydin çendîn saziyên produktionê hene, Agirî Soran armanc û sedemê sazkirina saziyeke nû, wiha vegot: "Me di karê KurdFM û şahiya şeva sersalê de potansiyela xwe dît. Me herwiha dît ku hunermend çiqas di rewşên xirab de neçar dijîn. Gelek hunermend bê derfet û bê alternatîf in. Gelek kes hene, xwediyê hêz û hestê hunerî ne, lê nikarin bi serê xwe gavekê bavêjin. Em ê ji wan re derfetan çêkin."

Agirî Soran got ew ê ji bo çalakiyên serbixwe sponsoriyê jî bikin di bazara muzîka kurdî de reqabetê bihêztir bikin û got "Em ji bo reqabetê tên." Soran da zanîn ku ew ê karên xwe hem li Stenbolê û hem jî li Ewrûpayê bimeşînin: "Ji bo vê jî wê lingek saziya me li wir, yek jî li vir be. Li Stenbolê em ê bêtir karên wek tomarkirina CD'yan bikin, li Ewrûpayê jî klîban amade bikin û konseran li dar bixin." Soran da zanîn ku ew niha bi nezîkê 40 hunermendan re di têkiliyê de ne û wek berhema yekem wê albûma Îbrahîm Rojhilat derxin.

**Em produktionek wisa saz dikin, da ku şivanekî bê derfet, lê xwediyê hestên hunerî bi rêya me karibe bibe hunermendekî navdar.**

### Pêşbirka Muzîka Kurdî

Yek ji projeyên Agirî Soran û hevalên wî jî lidarxistina 'Pêşbirka Muzîka Kurdî' ye. Agirî Soran daxuyand ku di karên radyoyê de wan rewşa piyasaya muzîka kurdî û çavkaniya wê ya ji aliyê hunermendan ve baş naskirine û got ew ê ji bo danasîna kom û hunermendan wek Eurovisiona Kurdî ango Kurdvison, şîrketeke taybet ava bikin û nav û logoyeke kurdî lê bikin. Sedemê vê saziyê jî Soran wiha anî ziman: "Bila mirovekî şivanê gund ku dengê wî xweş e û hestên hunerî pê re hene, bi rêya me karibe bibe hunermendekî navdar. Em ê ji gelek hunermendên ciwan û nenas re derfetan çêkin, da ku hunera xwe pêşkêş bikin." Soran got ew niha ji bo bibin endamên jurî, bi gelek hunermendên navdar re diaxivin û nêrînên wan jî distînin. Soran got ew plan dikin ku ev pêşbirik du salan carekê bê lidarxistin û divê xwediyê xelateke zêrîn be ku bihayê wê kêmî 15-20 hezar Euro nebe. Di dawiya axaftina xwe de Soran bibîrxist ku berê Denge TV tiştek wiha ceribandiye, lê bi serneketiye. Ji bo wê jî ew dixwazin bi hemû hunermendan re biaxivin û wan tevlî hevkariyê bikin.

## Bin Elî reviya



Taman Şakir

Sîdî Bû Zêd dibe dergehê serhildana gelê Tûnisê piştî ku Mihemed Bû Ezîz ji qehra bêkarî û zordariya karbidestên Tûnisê xwe şewitand.

Bûyerên Tûnisê û reva Serokê Tûnisê Zênulabidîn Bin Elî bûyerên sala 1979'an li Îranê anîn bîra me. Ev dide nîşandan çawa gelên Rojhilata Navîn ji destê serokên xwe dinalînin, ev serokên ku ne rêvebirê karên xwe, lê dagîrkerên welatên xwe ne, ji ber ku xelkê ew ne hilbijartine û newêrin dîwarê di navbera xwe û xelkê de hilweşînin, di encamê de jî bi hawarî direvin.

Bin Elî berî bicîhiştina Tûnisê du gotar pêşkêş kirin, wî di gotara xwe ya yekemîn de got xwepêşandan ji ber giraniya nan, rûn û şekir ne rewa ne û wê bi tundî bên bersivandin. Bi rastî diviyabû hejarî, nebûnî, birçîtî û bêkariya xelkê Tûnisê li cem serok ne rewa bûna û ji şûna girankirina xwarinê li çareseriyeke baş bifikiriya. Normal e serkirdeyekî Rojhilata Navîn weha fikir bike, ji ber haya wan ji pişt deriyê wan tune. Bi rêya mirovên li pişt dergehên wan dengê xelkê dibihîzin û rastiya meseleya nizanin. Girîng ku hezkirin û jiyana xweş a xelkê ji serokê her welatekî re bibe sermaye, lê ne pereyên li bankan û kerb û kîna xelkê.

Bin Elî li koşka xwe rûdine û biryara girankirina nirxê nan, rûn û şekir dide. Serok jibîr dike ku birîn ser ji birîna nanê baştir e, loma Mihemed Bû Ezîz agir berda laşê xwe û nema birçîtî tahmûl kir. Mihemed Mîmarî yê derçûyê beşa Fîziya, bi elektrîkê dawî li birçîtî û bêkariyê anî. Ev herdu kes bûn dînamoyê raperîneke seranserî li Tûnisê û bi hezaran kes rijandin ser kolanan. Ne dûr e agirê vê serhildana girseyî ya Tûnisê derbas bibe bo piraniya welatên navçeyê. Bêkarî û gendeliyê piraniya welatên Erebî wek Misr, Sûriye, Moroko, Îraq û Urdun daye berxwe. WikiLeaks bi belavkirina belgenameyên Amerîka, behsa sermayeyên xeyalî yên van serkirdeyan dike û rastiya wan li ber çavan radixe. Tevî ku sedemên serhildana Tûnisê li piraniya welatên Rojhilata Navîn hene, wek bêkarî, nebûna dadperweriya civakî, bicînekirina sîstem û yasayan, dabeşkirina xêrûbêrên welat li ser çend kesan û bêbeşkirina piraniya xelkê, nebûna azadiya bîr û nerînê û nebûna medya azad û girtin û kuştina rojnamevanan.

Di heman demê de vejandina dezgeh û saziyên binpêkerên mafên mirovan bi mebesta êşandina hevwelatiyan. Amerîkî nahêlin serokên wan zêdeyî 8 salan bimînin, li gor wan mabûna zêde li ser kursî gendelî û dîktatoriyê çêdike. Piraniya serkirdeyên Rojhilata Navîn ewqasî dilsozên kursiyên xwe ne ku dilê wan jê nabe û dema temenê wan bi ser 90 salan dikevin neviyên xwe bo kursî amade dikin.

Bin Elî 23 salan dest danîbû ser her tiştî, lê dema zor hat hemû betal bû. Bila Tûnis bibe sedemê lixwevegera serkirdeyên pîr ên Rojhilata Navîn.

### Ji Xwendevanan



Birêz xebatkarên rojnameya Rûdaw. Me îro hejmara we ya nû girt. Di rûpela diduyan de, karîkatûrek heye. Ez wek rojnamevaneke Kurd redaksiyona we ne tenê rexne dikim, lê şermezar dikim. Tiştekî wisa şerm e. 'Azadiya raman û çapemenî ne ev e.

***Meral Çiçek / Yeni Özgür Politika***

## Deshilatdariyeke baş bi kiryar

David Romano



Min heftiya derbazbûyî biryar da ku ez di gotara xwe ya bê de behsa hinek konkrêtan bikim ku ji bo deshilatdariya li Kurdistana Îraqê pêwîstin. Rêvebirên Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi mîsogerî "Bi gotin" li gel demokrastî, lîberalî û rêveberiyek başin. Li gor standartên herêman jî, ew ne ewqas xirabin, lê di demek ku pirs li ser wê herêmê heye û standarta wan ne gelek bilinde.

Ez ji despêka vê heftiyê rastî ecêbmayînek keyfxweş bûm ku min bihîst deshilatdariya Herêma Kurdistanê pêngavek biçûk, lê rêvebiriyek giring ji bo baştirkirina rêvebiriya li Herêma Kurdistanê avêtin. Ev jî ji aliyê Cîgirê Serokê Partiya Demokrata Kurdistan (PDK)ê, Nêçîrvan Barzanî hat diyarkirin ku partiya wan hemû şikayetên li dijî belavokên serbixwe û ne hikumî yên ku hatine tomarkirin, wê vekêşinin. Xeniqandina çapemeniyê bi rêya şikayetên yasayî bi sedema tometên teşhîrê ti sûdekê nagihîne civakê. Rêvebiriya siyasî dikare bi awayek tendirust rûbirûyê çapemeniya ne berpirs jî dibe. Bi rêya paşgûhxistin yan jî bersivdana êrişan û bêyî hewl bidin ku ji nav bibin yan jî bi temamî bêdeng bikin. Pêngava erênî ya dahatûyê divê ji damezrandina hewldanên erênî yên Nêçîrvan Barzanî bi rêya pejirandina yasaya nû ya ku azadiya fikirînê li Kurdistanê zêdetir dike û pênaseya teşhîrkirinê û daxwaza tazîmatê kêm bike.

Ji bo her pêngavek ber bi pêş ve, mixabine ku pêngavek ji bo paş ve hebe. Yasaya nû ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê ya derbarê meşan de, pêwîste pêşwext rezamendiya Hikûmetê li ser hebe û dibe ku amêrek be ji bo dirûstbûna pirsgirêkan. Wek wê lehiya rexneyan a di hemû warên civaka Kurdî ya sivîl de xuya dikin. Di van meseleyan de baweriya xelkê bi deshilatê nîne û nabe jî bawerî pê hebe. Divê li cihê vê yekê bêhna lênêrîn û kontrolkirina demokrasiyan li ser wan egerên ku xelkên ne kêrhatî yên deshilata siyasî kontrol dikin, hebe. Pêwîste PDK û YNK berî pejirandina her yasayekê, vê pirsê ji xwe bikin ku erê wê ew ligel vê yasayê razî bibin eger Goran yan jî partiyên Îslamî li deshilatê de bin û ew opozîsyon bin. Eger bersiv 'Nexêr' be, wê demê divê di yasayê de pêdeçûnê bikin. Heman lojîk bêgûman yasaya nû ya hilbijartinan a li Kurdistanê jî digire nava xwe. Eger hat û îhtîmala binpêkirina bi awayek bilind li holê bû, mînak; wekî ku daxwazê ji rovî bikin ku haya wî ji çûçikan hebe, wê demê dibe ku ev yek ne rêvebiriyek baş û bingehê damezirawekî baş be.

Herwiha rêvebiriya baş pêwîste bi awayek cidî rûbirûyê gendelî û xizimtiyê bibe. Eger ew du partî hêza wan a neçarkirinê di demokrasiya ji nû de serî hildide zêde bû, wê demê gelek zehmete ku tu bikarî tiştek din bi destbînî. Dahênan, berhemanîna biyanî, serweriya yasa û asta bilind a xizmetkirina giştî, evane hemû dibin gendeliyê de dihêlin. Berî du salan Hikûmeta Herêma Kurdistanê "Bi gotina behsa" piştgirî da rêvebiriya serketî û dema kompaniya rawêjkarî Price Waterhouse Coopers vexwend ku heta çareseriya gendeliyan bike. Anîna kompaniya rawêjkariyê ya herî mezin ne tenê ji bo ragihandinê ye, em hêvîdarin ku wan raport û pêşniyarên xwe amade kiribin yan jî di demek pir nêzîk de temam bikine.

Herçendî lîsteya pêşniyaran ji bo baştirkirina rêvebiriyê tê kirin zêdetir be, lê bi nerîna min ev xalên herî giringin ku pêwîste Hikûmeta Herêma Kurdistanê xebatê li ser bike. Herwiha pê diçe pêwîst be ku em li Kurdistanê balê bikşênîn ser Îslamê. Di vê dawiyê de hejmareke rewşenbîr û çalakvanên warê jinan daxwaz ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê kirine ku bi dijwarî gotarên roja înê yên mizgeftên Kurdistanê kontrol bikin. Wê ev ji bo nehiştina hinek xeyidînên beramberî azadîxwaz û rêxistinên jinan a li çend taxan ji aliyê melayan ve êrişî wan hatî kirin, bibe arîkar. Lê mixabin ev yek jî deshilatek zêde dide destê rêberên siyasî. Yasaya baş a ku çareseriya hilketina îmamên radîkal bike, bersivek fermî bide, wê ev yek pir ji zêdebûna sansûr û kontrola hikûmetê zêdetir xizmeta Kurdistanê bike. Mizgeft her wekî dêrên li Rojava, gelek caran dibin çavdêriyek giring li ser deshilatdariya hikûmet û aliyên exlaqî jî.

## Ji ber çi Kurdên Tirkiyê bi tirkî daxivin?

Wladimir Van Welgunburg



Pir caran ji aliyê neyarên PKK'ê û kesên derveyî wê rexne lê tên girtin ku serkirde û endamên wê partiyê zêdetir bi tirkî daxivin. Kurdên Îraqê jî heman rexneyan li Kurdên Tirkiyê digrin, herwiha behsa wê yekê jî tê kirin ku Kurdên Sûriyê li kampên perwerdeya leşkerî yên PKK'ê hînî zimanê tirkî dikin.

Gelo ev kêmasiyeke PKK'ê ye yan mesele bi tevahiya sîstemê ve girêdayî ye? Ji ber Îrlandiyên neteweperest jî bi hev re ji zimanê îrlandî bêtir, bi îngilîzî daxivin. Hikûmetên Tirkiyê ji dema damezrandina komara Tirkiyê hewl didin ku gelên din ên li Tirkiyê bikin Tirk, weke hewldanên hinek welatên Ewrûpa yên ji bo asîmîlekirina gelên biçûk ên jêrdestên wan, ji ber ew jî behsa yek dewlet, yek ziman, yek gel û yek netewe dikin.

Gava PKK hat dirustkirin hejmareke komunistên Tirkiyê jî tevlî bûn, herwiha Kurd jî bi çend zarav daxivîn û dewleteke wan nebû ku zimanekî standart ji wan re deyîne. Lewra jî zimanê Tirkî ew ziman bû ku hemuyan jê fam dikir û bi hêsanî dikarîn bi hev re gotûbêjan bikin, ji xwe ji ber vê yekê heta niha piraniya Kurdan di sazî û rêxistinên xwe de zimanê Tirkî bikar tînin.

Çalakvanekî Holendî yê bi esl Endenozî bi salane ku piştevaniya Ebdulla Ocalan dike û li mala endamên PKK'ê radize û li saziyên PKK'ê dema xwe derbas dike. Dema daxwaz jê tê kirin fêrî kurdî bibe, şaş dimîne. Wî nedixwest fêrî zimanê kurdî bibe û digot: "Kurd bi xwe naxwazin hînî zimanê xwe bibin." Berê wiha dihat fikirîn ku ev kêmasî ji ber siyasetên PKKê ye, lê vê dawiyê dest bi sazkirina kampînên ziman kirin û zimanê kurdî jî ji aliyê siyasetvanên PKKê zêdetir tê bikaranîn.

Di destpêkê de di hundirê PKKê de "şerê ziman" roleke kêmtir dilîst di dirustkirina dewleteke serbixwe ya komunîst de. Vê pêla dawî, tevlî civîneke saziyeke Kurd a 'rikebera' PKKê bûm. Li wir ji min re eşkere bû ku piraniya wan jî bi zimanê tirkî daxifin. Ev di demekê de ye ku ew ji kesên biyanî yên wek min re dibên: "Em zêdeyî PKKê guh didin çanda kurdî!"

Gelo xeletî, xeletiya PKKê ye? Bêguman na, lê pirsgirêk di sîstema dewletê de ye. Li Îraqê hê di serdemê Brîtaniyan de zimanê kurdî hatibû naskirin, loma piraniya Kurdên Îraqê bi zimanê kurdî daxivin. Bi taybetî jî niha ku herêmeke wan a taybet heye. Herwiha li Îranê jî hewldanên asîmîlekirina netewî kêmtirin.

Îrlandî yên neteweperwer ên Îrlanda jî heman pirsgirêka wan heye, ji ber gelek Îrlandî êdî bi zaravê îrlandî naxivin û ji ber siyaseta Îngilîzan bi zaravê brîtanî dipeyivin, lewra jî beşekî zêde ji endamên bizava netewî ya Îrlanda bi zaravê îrlandî naxivin. Loma ev bizav hewl dide xelkê dehif bide da bi Îrlandî bipeyivin. Lê pirsgirêk ew bû ku zimanê îngilîzî bûbû zimanê fermî û berjewendiyên aborî jî ji zimanê dê mezintir bûn, ji ber vê yekê jî ku her çiqasî otonomiyeke Îrlanda ya mezintir jî heye, lê zimanê herî girîng li vî welatî her zimanê îngilîzî ye.

Bi baweriya min bo Tirkiyê jî her wisa dibe. Bi ser de jî, ger Tirkiyê jî derfetên zêdetir dabîn bike bo xwendina bi zimanê kurdî, dîsa zimanê tirkî girîngtir dimîne bo gelê Kurd. Li Holenda jî her çiqasî Firîzên Firîzlandî dikarin bi zimanê firîzî bixwînin, lê hejmareke pir kêm bi vî zimanî dipeyivin, ji ber di warê aborî de zimanê holendî bêtir bi kêrî Firîziyan tê. Bê guman ji bo Kurdên Holenda jî li şûna axaftina bi Kurdî yan Tirkî, baştir e ku ew fêrî zimanê Holendî bibin.

Rojnamevanekî Holendî ji hinek Kurdên Tirkiyê pirsî bû ku gelo dixwazin fêrî zimanê kurdî bibin? Wan jî di bersivê de gotibûn her çiqasî dixwazin fêrî zimanê xwe bibin, lê zimanê tirkî di aliyê aborî de bêtir bi kêrî wan tê. Ev nayê wateya ku ev Kurdên han bûne Tirk, lê ew heta dawiyê Kurd in. Hejmareke zêde ya Îrlandiyan jî bi zimanê îngilîzî dipeyvin, lê herdem xwe wek Îrlandî dibînin û dihesibînin.

# Dîyarbekir de dersa kirmanckî (zazakî)


Kongre ra yew vîstke

**Dîyarbekir (Rûdaw) -** Nê demanê peyênan de Dîyarbekir de kirdî eleqe nîşanê kirdkî danê û di cayan de dersa kirdkî (zazakî) yena dayene.

Cayêk buroyê Vateyî de, di sinifan de derse yena dayene. Sinifêk de Mehmud Nêşite, ê bînî de zî Muzafer Xeylanij û Serdar Bedirxan derse danê. Kesê ke buroyê Vateyî de dersa kirdkî (zazakî) gênê hîna zaf wendekar ê.

Cayo bîn ke dersa kirdkî tede dîyena zî Odaya Tebîban ya Dîyarbekirî ya. Uca de zî Roşan Lezgîn çarçewaya xebata komela ziwan, huner û kulturî Ziwan-Komî de derse dano. Kesê ke Odaya Tebîban de dersa kirdkî gênê, zafê înan doktor ê. Yê bînî zî mela, avukat, muhasib û qismêk zî memur ê. Mîyanê nê kursîyeran de gelek kesî endamê komela Ziwan-Komî yê.

Buroyê Vateyî de her roja yewşeme (bazar) hela şanî derse dîyena. Odaya tebîban de zî her roja çarşeme badê 17.30 derse dest pêkena.

Her di cayan de zî her ke şino kesê ke wazenê dersa kirdkî bigîrê roje bi roje vêşî benê. Naye ra girêdaye kitabê kirdkî zî her ke şino hîna vêşî roşîyênê. Kesê ke yenê kursê kirdkî muheqeq ferhenganê kirdkî, kitabê rastnuştişî û kitabê dersa kirmanckî (zazakî) erînenê. Nê kitaban ra teber zî kitabê edebî hetê nê kursîyeran ra eleqeyêko baş vînenê.

Bi no qayde roje bi roje kirdê ma zî xo hesyenê û ziwanê xo rê wayîrîye kenê.

## Dîyarbekir de Şorişê Kirdkî



Roşan Lezgîn

Mi telefon ra ewnîya, kek Seîd bi. Va, "Ti kure yî? Ti nêomeyî!..." Mi va, "Kek Seîd, qusur ra mewnî, embazan studyo ra veng da mi, zaf acîl bi, ez şîya Dîcle Kent. Nika ez ha mînîbuse de yena. Ti kam cayê Ofîse de yî?" Kek Seîdî va, "Ma hê Sanat Sokak de, o cayê ke garson û wayîrê ey kirdkî qalî kenî..." Mi va, "Kam hetê Kuçeyê Hunerî de yo, kamcîn kafe bî?..."

Axir kek Seîdî telefon de mi rê cayê kafe tarîf kerd, mi va, "Ez ha yena, da-des deqayan de ez uca ya..." Û ma xatir waşt, mi telefonê xo pada. Tabî gama ke merdim mînîbuse de qisey keno, hema vajêne ke her kes şêno vengê merdimî bigoşdaro.

Badê ke qiseykerdişê mi qedîya, qasê yew-di deqayî dima, mi dî kênayêka rindeka porkeje ke qoltuxa vernîyê mi de ronişte bî, telefonê xo vet, yew numre gêra. Û dest pêkerd bi kirdkî qisey kerd. Kêneka rindeke biney bi vengo berz qisey kerd. Seke mesaj bido mi, vajo, "Qey ti tena şênî kirdkî qisey bikerî? Bewnî, ez zî sey to kird a û kirdkî qisey kena. Ez zî sey to ziwanê xo ra nêşermayena!..."

Ziwanê aye fekê Sêwregi bi. Qalê fîşe kerdêne, qalê xestexaneyî kerdêne, qalê îlacan û fîlmê rontgenî kerdêne. Persayêne vatêne nika ti senîn a? Filan û bêvan... La tim waştêne ke qiseykerdişê xo derg bikero. Kirdkîya kêneke zaf fesîh û zelale bî, qet yew çekuya tirkî zî nêkerdêne mîyan.

Qiseykerdişê aye zaf ro weşa mi şi, zaf keyfê mi ame. Çunke ez tecrubeyanê xo ra zana ke nisbet bi camêrdan zafê cinîyê ma kirdan, ê ke musayê tirkî, êdî kirdkî ra şermayenê, bi kirdkî qalî nêkenê. La na cinî seke qiseykerdişê mi ra cesaret bigîro, seke mesaj bido mi, seke nîşan bido ke a bi zanayîş, bişuûr kirdkî qisey kena.

Mînîbusa ma êdî resabî semtê Bayindirlikî. Yew-di deqayî badê ke qiseykerdişê kêneka porkeje qedîya, na rey xortanê ke qoltuxa peyêne de ronişbîy ra eyê hetê pencera telefonê xo vet, numre gêra û dest pêkerd bi kirdkî qisey kerd. Kirdkîya nê xortî yê hetê mintiqayêka Pîranî bî. Vatêne "Bindê bondê ma di..." Nê xortî zî vengê xo bi ma dayêne eşnawitiş. Eynî seke ma rê nîsbet bikero. Seke vajo, ez zî kird a. Ez zî sey şima hol kirdkî qalî kena. Wina asayêne ke lajek waştîya xo reyde qisey keno. Hetanî ke mînîbusa ma resa bi semtê Ofîse, ez ameya war zî lajekî telefon de qisey kerdêne.

Ma ke resay goşeyê parkê Koşuyoluyî na rey a cinîka ke tut verara aye de bi û kîşta min a raste de ronîştbî, telefonê xo çanteyê xo ra vet, yewî gêra û dest pêkerd bi kirdkî qisey kerd. Kirdkîya na cinîke kirdkîya hetê Gêlî bî. Hetanî ke ma vîyadukê Ofîse ra zî vejîyay aye qiseykerdişê xo dewam kerd. Qaso ke mi fehm kerd, xo rê suhbet kerdêne. Yanî seba çîyêkê acîlî telefon nêkerdbi.

Kam vano se wa vajo, mi rê wina ame, seke a zî vajo, qey şima tena kird ê, şima tena zanî kirdkî qalî bikerê, ez zî kird a û ez ziwanê xo ra nêşermayena!

Herçî ez a, mi kerdêne ke ez keyfan ra bifirrî. Seke ma kirdan şoriş kerdo, seke ma Kurdîstan azad kerdo, seke ma dewleta xo ronaya, hende keyfê mi ame. Bîy 36 serrî ke ez ha merkezê Dîyarbekirî de ronişena. Zaf kesê ke ziwanê xo ra şermayenê, xaseten kirdê ke ziwanê xo qisey nêkenê, mi zaf dîyê. Nê hetî ra ez zaf dejaya, zaf rey moralê mi xeripîyayo. La na reya verên a ke ez vînena cinî, kêna û xortê bajarî û modernî bi no qayde rehet, heta ke bi mexrûrîyet mînîbuse de kirdkî qisey kenê.

Wilay mi va qey kirdanê ma şoriş kerdo.

Dîyarbekir, 13.11.2011


Odaya Tebîban ya Dîyarbekirî de dersa kirdkî

## Ziwan-Komî kongreya xo viraşte

**Dîyarbekir (Rîdaw)-** Komela Ziwan, Huner û Kulturî Ziwan-Komî kogreya xo ya yewine ya asayî viraşte.

Kongre roja 15.01.2011 de salona Odaya Muşawir û Muhasibanê Malî yê Dîyarbekirî de virazîya. Kongre de tena endamê komele amade bîy. Endamê komele yê ke Dîyarbekir de ronişenê heme beşdar bîy. Kongre saete 10.00 de dest pêkerd, 12.00 de qedîya.

Kongre de seba îdareyê daîmî panc kesî û seba lijneya teftîşî zî hîrê kesî weçînîyay. Seba her di teşekulan hende zî yêdekî weçînîyay.

Rojeva kongre de tepîştişê cayêk seba komele û vetişê yew kovare munaqeşe bi. Endaman seba tepîştişê cayî û seba vetişê yew kovare selahîyet da endamanê îdareyê komele.

Hetanî nika çarçewaya xebata komele de kursê kirdkî ameyo dayene û no kurs Odaya Tebîbanê Dîyarbekirî de dewam keno. Qismêk endamê komele zî tede qasê davîst kesî beşdarê kursê kudkî benê.

# Zarokên Qendîlî pêşangeha wêneyan vekirin

Ekîn Nîl Qendîl (ANF)


Nivîsa ser wênê: Zarok kevokên aştiyê ne, kevok jî şer naxwazin

Zarokên dibistana gundê Qeletê ya li herêma Balayan a Qendîlê pêşangehek amade kirin. Pêşangeh bi navê Bêsoza 13 salî ya ku di topbarana Îranê de li gundê Weznê jiyana xwe ji dest dabû, hat vekirin. Herwiha di salona pêşangehê de jî wêneyên zarokên di şer û pevçûnan de jiyana xwe ji dest dane, hatin daleqandin.

Wêneyên ku ji hêla zarokan ve hatin çêkirin bi dirûşma "Zarok kevokên aştiyê ne, kevokên aştiyê şer naxwazin" û "Wekî zarokên din bila zarokên Kurd jî bi zimanê kurdî perwerde bibin" pêşangeha xwe vekirin. Pêşangeha zarokan rastî eleqeyeke mezin hat. Zarokan di pêşangehê de derbarê şer de nêrînên xwe vegotin û bi nivîskî di bin wêneyên xwe de anîn ziman.

Herwiha di pêşengehê de zarokan berhemên ku bi heriyê çêkirin jî pêşkeş kirin. Organîzatora pêşengehê rêvebera navenda jinan Viyan Şoreş, axaftinek kir û bal kişand li ser bandora şer. Şoreş, destnîşan kir ku di şer de herî zêde jin û zarok bi bandor dibin û zirarê dibînin. Piştî merasîma vekirinê bername hat pêşkeşkirin. Merasîm bi skeç û mizûka zarokan bi dawî bû.

# Niyan Ebdûllah bi kurmancî jî distire



**Hewlêr (Rûdaw) -** Stranbêja Kurd Niyan Ebdûllah ev 2 sal in bi albuma xwe ya bi navê 'Bîrit Dekem' (Ez bîra te dikim) ve mijûl e. Niha karên wê qedandiye û li benda şîrketê ye.

Stranbêj Niyan Ebdûllah ji Rûdawê re diyar kir ku, ev 6 sal in bê album e û nêzî 2 salan e bi albuma bi navê 'Bîrit Dekem' ve mijûl e û got: "Ev album berevajî karê min ên din xwedî cûdahiyekî mezin e. Min bi stîlên cûda ji bo stranên xwe yên vê carê kar kiriye."

Niyan bal kişand ser wê yekê ku, albuma wê ji 9 stranan pêkhatiye. Du stran bi zaravayê kurmancî gotiye û cara yekem e li ser straneke kurmancî kar dike. "Niha karê tomar û amadekariyên albuma min qediyane. Tenê ew yek maye ez bi şîrketekê re ji bo karê çap û bilavkirinê lihev bikim. Niha ez li benda wê me."

# Kejal wergerê dike

**Swêd (Rûdaw) –** Stranbêja Kurd a ji Rojhilatê Kurdistanê Kejal Ademî albumeke nû amade dike ku dixwaze di Newrozê de belav bike. Wekî din jî Kejal teksta fîlmekî kurdî wergerîne bo zimanê swêdî.

Kejal Ademî niha albuma xwe ya nû amade dike ku biryar e di cejna Newrozê de belav bike. Çavkaniyeke nêzîkî Ademî bo Rûdawê ragehand: "Kejal herwiha bi wergerandina fîlmekî dokumentarî yê kurdî bo swêdî ve mijûl e. Navê film `Kurdê pêşmerge` ye ku birayê wê Zaniyar Ademî nivîsandiye û ji aliyê derhênerekî Swêdî tê kişandin."

Ev fîlm ku ji aliyê kanala navnetewî ya Swêdê tê çêkirin, behsa dîroka xebata gelê Kurd li Rojhilatê Kurdistanê dike.

# Payîza Xûlamî Rewandûz e


Wêne: Rûdaw

**Hewlêr (Rûdaw) -** Stranbêjê Rojhilatê Kurdistanê Necmedîn Xûlamî, wê di demek nêzîk de li Rewandûz strana 'Payîz Payîz' bike klîb. Hunermend Necmedîn Xûlamî bi niyete ku strana Payîz Payîz a ku di sala 1987'an de li gel grûba Rewandûz tomar kiribû, dîsa li bajarê Rewandûz bike klîb. Ev stran ji helbesta mamosta Goran pêktê.

**Çeperast:** 1- Gazind, rexne – Bajar. Medenîyet. 2- Ceza, êşkence, êş – Maç, maçkirin. 3- Xwarinek bi dan û mast (berepaş) – Fêkîyek tropîkal. 4- Ne bilind e, kêm e (berepaş) – Bi Erebî "na". 5- Kom, grûp, rêbir (berepaş) – Kesê ku bi ekolojîyê dadikeve. 6- Taxim, rêz, hejmar – Rojek – Bêhnpêketî, rizyayî, xerabûyî (berepaş). 7- Serê kêş, tim, serê gir (berepaş) – Zanîngeh, Unîversîte (berepaş). 8- Çi çax, çi wext (berepaş) – Nuh, taze. 9- Şên, lêbûyî – Li Afrîka welatek. 10- Di Zerdûştîyê de xwedayê qencîyê.

**Serejêr:** 1- Desthilatdarî, rêveberî. 2- Egoîzm, xweperestî – Derî, perestgeh. 3- Hilgirtin, rakirin, birin. 4- Kêm tê dîtin, ecêb, nadir. 5- Kesê ji Ermenistanê. 6- Redkirin, qebûlnekirin, nexwestin – Tûj, na, hişk – Mam, ap. 7- Serê tizbîyê, îmama jin – Ava zayendî, girêz (berepaş). 8- Tiştê dişibe şûnik, bi şûnik ve girêdayî – Çêbû, hat dinyayê (berepaş). 9- Pisporê şanoyê, kesê serê xwe bi şanoyê dêşîne (berepaş). 10- Nav û deng, navdarî, pesin – Zû, ecele, xurt – Notayek. 11- Mekîna ku kanalên satelîtê derdixe – Nexwestin, paşdevegerandin. 12- Kûçik, sa – Zimanê Rûsan.

## Xaçepirs

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | ■ | | | | |
| 2 | | | | ■ | | | | | | | | ■ |
| 3 | | | | | | ■ | | | | | | |
| 4 | | ■ | | ■ | | | | | | ■ | | |
| 5 | | | | | | ■ | | | | | | |
| 6 | | | | ■ | | | ■ | | | | | ■ |
| 7 | | | | | ■ | | | | | | ■ | |
| 8 | | | | | | ■ | | ■ | | ■ | | |
| 9 | ■ | | ■ | | ■ | | | | ■ | | | |
| 10 | | | | | | | | | | | ■ | |

## Bersivên hejmara 78

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | h | e | ş | e | n | c | i | z | r | a | w | î |
| 2 | e | r | ê | n | î | | r | e | ■ | k | a | ş |
| 3 | m | ê | v | a | n | x | a | n | e | ■ | r | ■ |
| 4 | e | ■ | o | x | i | r | ■ | g | a | m | e | ş |
| 5 | d | e | k | ■ | ç | e | k | i | ■ | e | w | e |
| 6 | a | b | ■ | d | ■ | ç | e | n | d | ■ | e | m |
| 7 | n | a | z | i | m | ■ | r | ■ | e | z | ■ | e |
| 8 | ■ | b | e | r | a | m | b | e | r | ■ | î | d |
| 9 | ş | î | r | a | n | î | ■ | ■ | m | û | s | a |
| 10 | i | l | o | n | ■ | x | a | n | e | d | a | n |

# Wikileaks dibe peyveke serbixwe




Navenda Cîhanî bo Çavdêrîkirina Ziman ku bingeha wê li wîlayeta Teksas a Amerîka ye, ragihand ku peyva Wikileaks bi awayekî fermî û wek peyveke serbixwe derbasî nav zimanê îngilîzî bû.

Rêveberê navendê Pol J.J. Beak daxuyand: "Wikileaks wek hinek alavên medya yên nû û hinek şirketên mezin ên teknîkê ku nav û karên wan tevî zimanê îngilîzî bûne wek Google, Facbook û Twitter, di zimanê îngilîzî de dibe peyveke serbixwe."

Di îngilîzî de pîvana zêdekirina peyvekê ew e ku bi kêmanî 25 hezar caran li dezgehên medya yên bi zimanê îngilîzî de hatibe bikaranîn. Peyva Wikileaks ev jimar jî derbas kiriye û wek rojnameya Guardian a Brîtanî nivîsandiye, heta niha 300 milyon caran di alavên ragihandinê de navê wê hatiye nivîsandin.

Wikileaks peyveke sazkirî ye û ji du beşan, Wiki û Leaks pêk tê. Wiki bi zaravê îngilîzî yê giravên Hawaii tê wateya lezgîn-xurt. Herwiha Leaks ku kîtika duyem a peyvê ye, tê wateya vedizîn an wekheviyê. Ev jî pêşanderê erkê malperê ye ku armanca wê ne qazanckirin e û tenê dixwaze belgenameyên nehênî û taybet eşkere bike.